*Ji rapora siyasî (ya 31'ê Cotmehê 1990'î) ku Sekreteriya Gelemperî ya Partiya Karkerên Kurdistanê pêşkêşî Kongreya Netewî ya Çaremîn kiriye, hatiye wergirtin û ji Tirkî ji bo Kurdî wergerandin:*

# LI HEMBERÊ TEVGERA BÊ WELAT HIŞTINA GELÊ KURDISTANÊ DI ŞERÊ ME YÊ WELATPARÊZIYA MEZIN DE BI XEBAT Û LÊDANA SERFÎRAZIYÊ EM BIMEŞIN SER HEDEF Û ARMANCÊN XWE!

Hêzên serdestên Tirkan ên hov, di dirêjahiya dîrokê de, li ser axa gelek neteweyan, bi daxwaza tunekirina wan, tevgereke bê welat hiştina wan a bê wîcdan birêvebirine. Xeleka vê tevgera bê welat hiştina gelan a dawiyê jî, welatê Kurdistanê ye. Mirovahî, li Kurdistanê rûberê xeleka vê tevgerê ya dawiyê, dibe. Serdestên Tirkan ên hov, bi metodên xwe yên pişta xwe didin tunekirinê, ji-cih-hilkirinê, kotek û hîlebaziyê, êrîşî gelê Kurdistanê dikin. Şerê daqurtîna vî welatî jî, bi teviya hîm û qudreta xwe pêşvedibin û dimeşînin. Bi taybetî piştî faşîzmeya 12'ê Îlonê, di rojên me de, bikaranînên li cihanê bê nimûne, datînin pêşiya xwe. Nimûneyên paşverûtiya navnetewan ji xwe re baş peyda kirine û van dikin lingên bingehîn ji bo polîtîkaya xwe ya hundurî û derveyî. Bi rengekî bê şeref û namûs, heya ji vê jî xiraptir, bi hişkî xistine mejiyê xwe yê gemar, ku armanca xwe ya qirkirinê li Kurdistanê pêkbînin. Ji bo serketina di vê de jî, keftûlaftên xwe yên dawiyê bi bê-aşî, hedar û wîcdanî birêvedibin û di vê riyê de hîma xwe heya dawiyê xerç dikin. Kirinên xwe, hem bi kotek û zorbaziyê, hem jî bi hîlebazî û dekûdolaban, dimeşînin. Vê jî li ser bingeheke bikaranîna dîrokî ya fireh bilind dikin. Li kêleka van tevan jî, pêwendiyên dîplomatîkî bi serdema me re danîne, ku naveroka wan tenê bi hîlebaziyê tijî ne. Ger ji bo demeke kin jî be, ev bûyer, hinde derfetên heya were gotin rêda û destda amade dikin û didin ber destan.

Li hemberê vê rewşa wan, rewşa gelê me ji ya pepûk û belengazan, reben û pejmûrdeyan jî nebaştir e. Rewşeke ji rê derketî, hatî xapandin û ne xwediyê berpirsiyariyekê bûye paya gelê me. Weke tê zanîn "bavê" Tirkan Ataturk, bi şêweyeke bê wîcdan vê polîtîkayê li ser me bikaranî. Bi xwe, yek ji yên dawiyê bû, ku vê polîtîkayê danîbû pêşiya xwe. Lê tê bîran, gava hebûna neteweyî ya Tirkan ketibû nava tehlûkeyan de, gotineke Ataturk heye, ku hingê gotibû, "Ketine nava xeflet û xiyanetê." Lê mirovên me, sed caran ji wan zêdetir ketine. Ne tenê ketine, heya ava hestûyen xwe jî vê "xeflet û xiyanetê" dijîn. Ne tenê serdestên me; mirovên me yên bindestîtîn û bêhtir tên cewsandin jî, biqasî wan, jiyaneke weke ya wan kirine paya xwe. Çi ji bo neteweyekî, ji bo milletekî lazim e? Tev ji bîr kirine. Xwe gihandine xala dawiyê ya ketin û sernizmiyê û li keviya vî tiştî sekinîne. Belê, hatine dawiya xefletê. Ketina ji aliyê civakî, ne-xwedîbûna kesbûn û şexsiyeteke neteweî... di vir de çi tixûb jî nema ne. Tiştê divê mirov li ser bipeyive ji vê jî derbas kiriye. Bi rengekî tevayî, mirovên me çiqasî ji buha û nirxên mirovahiyê qutbûne û dûr ketine? Me xwe gihandiye kîjan niqteya ku em bikaribin bibêjine xwe em mirov in, em însan in? Çiqas heqê me ji tiştekî weha re heye? Belê, em hatine keviya vê tixûbê û jiyaneke weha me kiriye paya xwe. Bê mezinkirina rastiyan, niqteya me xwe gihandiyê, ev bi xwe ye.

> *"Her rojekê tê nivîsandin, 'Welatê navê wî nehatiye danîn ji mirovan tê paqijkirin û valakirin.' Çolamerg, Sêrt, Wan, Serhadan (Qers), Ararad, Çewlik, Mêrdîn tên valakirin, başûrê Kurdistanê tê valakirin. Çiye ev rewş? Heywan bi xwe jî zû bi zû ji cihên jiyana xwe qut nabin, çûk û civîk bi xwe jî hêlinên xwe yên berî salekê çêkiribûn, nuh dikin; bizinên me hene, ku bi salan xwe dûr nakin ji wan zozanên Kurdistanê. Baş e, ma gelo mirovên me çawa dikarin welê welatê xwe valabikin û birevin?"*



> *"Ji cih hilkirin; ji welat dûr kirin, bi hemû lez û beza xwe didome. Lê ji hemû aliyan ve, her diçe bêhtir, ev bi sernizmî û bê-şerefî dibe. Heke di binê devê çekan û binkê çekan de ev bibûya, heke her rojekê mîna Ermeniyan, mîna Rûman me bidana ber kêr û dasan, laş û cendekên me nawalan dagirtibana, bê guman, heye wê baştir bibûya; heke em bibûyana êmê masiyan, bê guman ev wê hinekî bibûya leyiqê mirovatiyê. Lê belê ne welê ye: Nîv bi nîv bi dilxwazî, hindekî bi eşq û kêf, hindekî bi êş û dilşikestî ev dibe..."*

Bi zor û kotekê em dikarin behsa gotina "welat" bikin. Ji bo mirovên me gotina "welat" maneyeke tîne ziman? Ji bo birên gel ên berfireh maneya vê gotinê heye? Bi rastî, em pir zehmetiyan dikişînin, heya ku em bikaribin baweriya xwe pê bînin, ku ev gotin ji bo mirovên me tê maneyekê. Çima mirovên me nizanin û naxwazin xwedî li welatê xwe derkevin? Çima qiymetekê nadin hebûna gelê me ya zikmakî? Ev çi tersî ne bûne serdestên jiyana Kurdan? Em çiqasî qiymetê didine xwe bi xwe? Belê, bersivên van pirsan ên rast, ji me re bûne bersivên bi şik û guman, bersivên ne rast û jehr. Kî dixeyide bila bixeyide, rastiya jiyana Kurdan îro ev bi xwe ye. Ji ber ku em vê rastiyê gelekî baş dibînin, em vê rastiyê tînin ser zimanê xwe û jehrek jî be, em mecbûr dimînin ku van gotinan ji devê xwe derêxînin. Gotina "welat", divîbû ji Kurdan re bibe bingeha her tiştekî. Divîbû hemû serpehatin, orf û adet, liv û tevger, jiyan û exlaq li dora vê gotinê xwe bidana pêş. Lê mirovên me xwe paldidin ser kêlekên xwe û xwehr li vê gotinê dinêrin. Alaqa xwe hîç pê naynin, awirên reş lê digerînin, mîna ku ev gotin ji wan re jehra marekî kor û reş be. Ev çi mirovatiyeke erzan e? Heke ne welê be, kanî serdestiya me ya li ser jiyanê? Kanî hîm û quwweta me ya ji bo parastina welat, ji bo şer û cengê namûsê? Çima ev rastiyên bingehîn, bi vê çendê, bi şaşî û xeletiyan tijî bûne? Ma tişteke weha çawa karî bikeve ser rê? Di bin navê û xwe xapandina "Ez jî xwe xilas dikim", mirovên me, xwe ji erdê xwe qut dikin. Lê belê ev bosta erdî bi xwe ye, ya ku wan bi welat re girêdide. Zeviya ji çend bostan, xanikokê ji çend çavikên hilweşayî, çima bi buhayên tunebûnê tên firotin. "Hema bila ez bi lez xilas bibim, ez herime kîjan derê xem nake", ma ev jî hinceteke? Bi vê daxwaza vala, mirovên me bi lez û bezî ji malên xwe direvin, xaniyên xwe berdidin û berê xwe didin cihên ku hîç nedîtine, nizanin. Li wan deran çi wê bi serê wan were, wê çi bibînin, wê çawa bijîn... welatên xerîbiyê, hisreta mezin... Ev çi ji welat derketineke evqasî bê hisab e? Ev çi bêhisabiya mezin e, dîn û ehmeqî ye? Heke mîna dînan li gelê me nekiribana, ev tişt nedikarî were dîtin. Ev rewş, şanî me dike ku mirovên me gelek tiştên xwe yên di barê şan û şerefê de hunda kirine. Ji bo kesên weha, mirov nikare bibêje, ku ev însan in. Ji mirovahiyê derketine, riya xwe bi tevayî şaş kirine. Belê, rastiya heyî bi vê encamê ve girêdayî ye.

Tirkbûn, bi hovîtiya çînên serdest, bi şêweya bizdaneke bi vê girêdayî, şerekî bê eman û tixûb dimeşîne. Ev hovîtî, rastiya welatê gelan dihilweşîne. Di vemirandina hebûna civakî ya gelan de, di maliştina kesbûna wan a çandî de xwediyê hunerbazî, jêhatîbûn û tecrubeyan e. Em dev ji welatên cihanê yên din berdin, tenê li ser axa Anatoliya piçûk bi xwe, li ser vê bingehê gelek bikaranîn pêkhatine. Gava tenê em li van binêrin, emê bi hesanî sixlet û taybetiya wan bibînin û bizanibin. Hîç ne zahmet e, ku em bikaribin ji van fêr û dersên mezin derêxînin. Weke tê zanîn Anatoliya, di dîroka mirovahiyê de ji bajarvanî û medeniyetên kevintir yek e. Bê-hejimar êl û eşîrên mirovahiyê li vir konên xwe danîne, xwe bicihkirine. Li vir xwe gihandine çandekê. Anatoliya birekî cihanê yê welê ye, ku car bi caran dewlemendiyên çandî jiyaye. Heye ku welatekî gelek netewan bû, ku bêhtirîn nirx sistiye mirovahiyê. Lê hema bi carekê Tirk ketinê û weha lêxistine ku mejiyê mirovî disekine! Gava em jêmayên dawiyê yên gelên kevnartirîn bînin pêşiya çavên xwe, ev rastî çêtir wê were dîtin. Nimûne; Ermenî di medeniyetê de heya were gotin pêşveçûbûn. Di pîşe ê hunerê de, di wêje û xanemaniyê de berhemên baş didan mirovahiyê. Roleke wan a medenî kirinê hebû. Îro li şûna medeniyeta wan ba lêdixe. Ji rûxîn û kavîlekî jî wir ve çûne. Jêmayên wan bi xwe jî êdî nema dikarin werin nasîn.

Bajarvaniya Grekan heya serê sedsala 20'an li rojavayê Anatoliya heya were gotin serdest bû, xwediyê rewşeke weha bû. Gava li Rojhilatê Ermenî serdest bûn, di vê demê de li Rojava jî Grek serdest bûn. Sivîlîzasyonên sedan salan ên li dora Stanbolê, Zîreyên Egeîs, Marmara û Spî, îro jî bingehekî pêwîst ji bo jêmayên xurttirîn ên dîrokê pêşkêş dikin. Lê belê serdestên Tirkan, mîna ku kurtolek û potalek (cuce) bi qehremanan bileyizin bi van berhemên bajarvaniyê (medeniyetê) dileyizin. Ji fahmkirina wan dûr in. Ji jiyankirina wan gelek û gelek dûr in. Lê dest danîne ser tevan. Di bin navê "turîzmê" de pêşkeşî ezbeniyên xwe yên Ewrûpî dikin. Bi şer û cengê lê dan. Dest danîn ser erdê gelan. Mirov kuştin û qirkirin. Niha jî dîroka bi hezaran salan pêşkêşî qada bazarganiyê dikin. Careke jî, ji vî alî ve dixebitin ku van dewlemendiyan bimijin, ku em baş dizanin, hunerên cihanê hinek jî ev in. Ev zeftkar û dagîrker van nirxan fahm nakin, tiştekê li ser wan zêde nakin û pêş ve jî nabin. Li şûna kûrahiya giyanê (rihê) û fahmkirina jiyana pêşvebirina wan, nizmkirin, rûxandin, erzan kirin, kirine rastiya serdest. Belê, serpêhatina Atîlla, serpêhatina Hûnan, serpêhatina Oguzan, serpêhatina Osmaniyan bi rê ve dibin... Ev serpêhatina wan, ji sedan salan vir ve didome û tê. Di

dawiyê de jî, bûyera Qibrisê berdewama vê serpêhatinê ye. Serdestên Tirkan hovên welê ne, ku dikin, xwediyên medeniyetê bi xwe nekaribin dîsa li ser welatê xwe bifikirin. Belê, vê çendê wan nizm dikin, wan didin revandin, wan ji cih qut dikin. Eve Ermenî, eve Grek îspata vê rastiyê ne.

Hinde serzêdekirina li ser medeniyetê ya misilmaniyê heye. Li ser vê bingehê li Başûr medeniyeteke Ereban pêşveçûye. Hinde berhemên hêja yên ku ji Ereban mabin, hene. Lê serdestên Tirk kirine ku ev jî êdî neyin naskirin û fahmkirin. Hinde aliyên misilmaniyê yên baş hene, ku mirov dikarê wan di jiyanê de pêkbîne. Lê ev jî di destê wan de nema dikarin werin naskirin. Niha ol (dîn) anîne derekê, ku belkî jî sed caran zerartir e ji tiştên ku bê-ol bikaribin bikin. Çanda gelê Anatoliya bi tevayî kuştine. Bi rengekî vala û bi tevayî di bin fermana serpêhatinên hov û barbar de, ol tê bikaranîn. Berê bi şûr olî temsîl dikiran, lê niha bi şêweyeke xirabtir û li hemberê jiyanê, olî diajon şer û cengê. Çi alaqeyeke van bi misilmaniyê re jî tune ye. Misilmanî ne weha ye. Ger ji sedan salan vir ve îddîa bikin ku ji bo misilmaniyê şer kirine jî, ev ne rast e. Tenê dixwazin mirovahiyê bixapînin. Ji ber ku ew şûrê misilmaniyê ku ew behsê dikin, bi tevayî şûrekî xwînrijî û barbariyê ye.

Medeniyeta Farisan jî bilind bû. Lê vê jî, ji aliyê Rojhilat ve sekinandin. Ji ser vê bajarvaniyê jî mîna keriyên kulehan derbas bûn û zivirandin kavilekî. Belê bi tevayî rûxandin. Tirk, vê rola xwe ya li Anatoliya, ya kirh, bê-oxir, barbar heya rojên niha domandine. Bi rengekî xwedî-tivanc û êş vê kirine. Welê ku, li hemberê gelê Tirk jî neqenciya mezintir kirine hunera xwe. Tu caran xwe ji vê jî dûr negirtine. Weke tê zanîn, Tirkmen, Tirkên li jêr in. Tirkên bindest in. Mîna gelên din, Tirkmen jî, ji vê serpêhatina barbar zîrarên mezin dîtine. Belê, Tirkmen jî, gelê weha zilm dîtine ne. Netewê Tirk ê serdest, netewîperestiya wî û rastiya Tirkmenan ji hev cûda ne. Ev birê Tirkan, ku divîbû bibe perçeyek ji yekbûna netewê Tirk ê zikmakî, ji sedan salan vir ve birekî bindest e. Xwe avêtiye bextê çiyan û tenê bi vî awahî kariye jiyana xwe berdewam bike. Belê serdestên Tirk, vê bi Tirkmenan jî kirine. Tirkmen, ji xezeba siltanên xwe, ji ber zilm û zordariya wan herdemê revîne. Çûne Çiyayên Torosê, çûne Îranê, Erebîstanê û heya Balkanan û weha karîne xwe xilas bikin.

Gava mirov bi serê xwe bin, piçûk in û nikarin xwe mezin bikin. Gava çandeke lêhatî, rewşeke pêşvebirinê û medeniyetê hebe, mirov dikarin xwe buha û pîroz bikin. Heke ev nebin, mirov kop û seqet dimînin, kurtole û potal dibin. Tirkîtiya li Anatoliya îro kurtole û potal (cuce) e. Tirkê xwe mezin şanî dike jî, ji aliyê çi kesekî nayê hes kirin. Çi kesek hijê nakê. Li cihekî ku vê çendê pirr çand heye, lê berhemên medeniyetê vê çendê hatine rûxandin, mirov nikare behsa çi netewebûneke rast û bênexweşî bike, mirov nikare behsa bilindbûna şexsî bike. Çewtiya fermî ya serdestên Tirkan weha ye. Îro li cihanê ev çewtiya wan, bûye leyistokê di destê polîtîkayên derveyî û stratejiyên leşkerî de. Li vê cihanê, li kîjan derê hêzekî zorbaz û paşverû hebe, tê vê çîna serdest a Tirkan ji xwe re peyda dike. Tê û dibêje, “Ez vê çînê li hemberê çi û çawa bikar bînim, ji xwe re bibezînim.” Gava Qraliyeta Îngilîzan diho xwe berdabû Rojhilata Naverast û dixwest zehmetiyan derêxîne pêşiya Çariya Rûsî, hingê jî, ji xwe re Împaratoriya Osmanî peyda kiribû, ku paşverûtirîn û rizîtir ew bi xwe bû. Despotî û zorbaziya Osmaniyan hilweşiyabû û hîna di dawiya sedsala 18’an de divîbû ji holê were rakirin. Lê kapîtalîzm û dagîriya ku dixwestin cihanê dabiqurtînin, hiştin ku dewleta Osmanî jiyan bimîne. Ji bo Îngilîzan, ji bo Frensiyan divîbû jiyan bimîne û li ser vê bingehê împaratoriya Osmanî jiyan jî hiştin.



"Çawa mirov dikare dev ji welatê xwe berde û bireve?"

Wêne: Berxwedan

Em çavê xwe li rola ku dewleta Tirk leyistiye bigerînin. Ji roja ava bûye û heya niha bûye xwediyê kîjan rolê? Leyistokeke di destê Emerîka de ye. Daxwaz hene, ku vê dewletê bikin belayê sere gelên Rojhilata Navîn. Ev rewş, di dema damezirandinê de jî welê bû, niha jî welê ye. Medeniyet û hebûnên gelan, ku di dema avabûnê de wan tune kiriye, ji kûrahiyên dîrokê dihatin. Bajarvaniyên hezaran salan bûn. Medeniyeta Ermeniyan ku ji aliyê serdestên Tirkan ji holê hatiye rakirin, ji medeniyetên mirovahiyê ya dawiyê bû, temsîla medeniyeta hezaran salan dikir. Dîsa, medeniyeta Anatoliya ya ji holê hatî rakirin, ji berpirsiyariya medeniyeta Grekan a dawiyê bû. Çi anîn şûna van? Tenê bindestî! Bindestiya gelan, ku di xwînê de ava bû. Bindestiya gelê Tirk û gelên din. Çi bi navê sivîlîzasyonê hebû, tev birin hilweşînê û rûxandin. Polîtîkaya bingehîn a îro jî tê amadekirin, welê ye. Perçeyekê ji Qibrisê qut kirin û dixwazin Musil û Kerkukê jî li ser zêde bikin. Daxwaz hene ku her rojekê perçeyekê bi destê xwe ve bînin, armancên li hemberê Qafqasiya li ber çavan in. Belê, polîtîkaya wan li gora van armancan tê amadekirin. Bilî vê jî, li ser tiştekî baş hîç nafikirin û nasekinin. Ji xwe hunereke wan a weha çi caran nehatiye dîtin jî.

Di vê çarçivê de heya niha çi bi serê Kurdistanê anîne? Di dema li pêşiya me ya kin de, dixwazin di pirsa Kurdistanê de xwe bigihînin kîjan encamê? Gava em bersivên van pirsan bidin, emê bibînin, ku rewşeke welê heye, ku ne orf û adet, ne bingehên netewî, ne felsefe, ne jî çi meyleke siyasî ya serdemî dipejirînin (qebûl dikin). Li welat dagîrkeriyeke (kolonyalîzmeyeke) hov tê pêkanîn. Kedxwariya hundirî heya were gotin dijwar e. Pîveka pêşveçûna mirovahiyê, heya were gotin li paş hatiye hiştin. Mirovên me ji paş ve didin ser riya pêşveçûna mirovahiyê. Ev jî bi xwe re tiştekî gelekî ne baş aniye; mirovên me biyanê (xerîbê) ax û erdê xwe bûne, war û niştimana xwe nas nakin. Li ser vê bingehê jî mirovên me riya jiyanê di revîna ji erdê xwe û xaka xwe de dibînin. Vê ji xwe re kirine exlaqê jiyanê.

Mirovên me, bi rengê gelê Kurd, gelek caran şerê xwe kirine, lê ev şer tev, bi qirkirinên mezin hatine şikênandin. Binketin û şikestin bûne çarenivîsa berxwedanan. Hemû tevgerên berxwedanê rastî êrîşên dijwar û helez (ecêb) bûne. Hinde birên gelê me serî hildane û rabûne, hinde birên gelen me jî tevlî dijminan êrîş birine ser wan û wan şikênandine. Bêbextî û îxaneta di nava Kurdan de, her demê bûye sedema bingehîn, ji bo şikestin û perçiqînê. Rewşeke welê derketiye holê, ku mirov ji bêgaviyê gotinên “Kurd” û “xayin” bi hev re tîne ser zimanê xwe. Nejêhatîbûna berdewamî û îxaneta hundurî, kirin ku gelê me êdî bawerî bi xwe neynê (nehênê). Di demê de jî kirin, ku hirmeta ji bo xwe jî hunda bike, ev ji holê rabibe. Ev sedema bingehîn e, ji bo di giyana (rihê) xwe de, înkarkirina xwe bi xwe. Rewşeke weha raber bûye. Gava ku mirov kata (behsa) Kurdan bike, mirovê Kurd xwe ji vî gelî hisab nake. Weke ku ew ne ji Kurdan be, weke ku xuda laneta xwe barandibe ser vî nîjadî, mirovên me xwe dilivînin. Belê mirovên me ber bi rewşeke weha ve gindirîne.

Netewê serdest di dîroka xwe ya resmî de gelê me înkar dike. Xwe mîna neteweyekî pîroz û bilind pêşkêşî gelê me dike. Li ser vê bingehê jî revîna ji Kurdîtiyê ziviriye revîna mîna ji dojehê (cehennemê). Di vê revînê de mirovên me li hemberê hevûdu ketine nava hawîrkanekê (musabeqeyekê). Ev revîna ji Kurdîtiyê, çand û jiyanê li gora xwe ava kiriye. Mirov dikare bibêje, ku mirovên me di rihên xwe de, nezîkbûn û serdestiya di warê dîroka fermî de bi vî awahî fahmdikin.

Em îro posîde û bandûriyên vê rastiyê di têkoşînê de heya were gotin zelal, dibînin. Daxwaza nirovên me ji têkoşina rizgariya gelê me re hîna xwe negihandiye welatperweriyeke rast. Welatparêziya ku rayên xwe dirêjî kûrahiyên dîrokê dike û di peyvajoyê de hişîn bûye, pel û çiqilên xwe dagerandiye, hîna di rihê mirovên me de hişîn nebûye. Mirovên me, bi çanda netewê serdest, xwe nêzikê gel û welat dike; bi çanda netewê serdest li wan dinêre. Xwe di nava gel de nabînin, xwe weke şervanekî azadiyê ku perçeyeke ji gelbûnê, nabîne. Xwe welê şanî dike: Li holê milletekî perîşan û belengaz heye, ew jî dixwazê alîkariya vî milletî bike. Xwe ji vî milletî nabîne, dikeve nava rewşekî ku dixwaze alîkariya xwe pêşkêş bike; lê belê di rastîniyê de ew ji vî milletî ye û yên divê alîkarî bikin jî, dostên biyanî ne. Nêzîkbûn û nêrîna hema hemû ronakbîrên Kurdan bi vê nolê ye. Ev rastî, xwe serdestê hemû rewşenbîran kiriye. Ev rewş, di nava kadroyên me de jî xwe dide xweya kirin. Di nava kadroyên me yên xwe avêtine nava şer de jî, li kêleka zorî û zehmetiyên têkoşînê, ev tişt xwe dide şanî kirin. Rastiya ku di xeta me ya siyaseta girsên gel de hinek derdikevin derveyê xeta me, li ser vê bingehê ava dibe. Yanî bawerî ne-anîna bi kesbûna Kurdan, bawerî ne-anîna bi rastiya gelê me û nebûna xwediyê evîna welat, li ber çavan e. Ev jî, tenê dikare bibe tewrekî lutûfkar a biyanekî (xerîbekî) ku bi minnet şer û xebat dike.

Encamên kuvî û biyankirina polîtîkayên dagîrkeran, li cem mirovên me, hinde guhartinên giyanî yên pêwîst bi rê ve êxistine. Em dikarin bibêjin, mirovên me ji aliyê rihî ve sixletên gelbûnê hunda kirine yan jî ev rih, heya pîvaneke pêwîst hejiya ye û hilweşiya ye. Bê guman, kehniya vê jî ev e; zanyariya dîrokî heya were gotin hatiye bervajî kirin.

Serîhildana me ya mezin li hemberê vê rewşê ye. Jiyan û meşina bi vî rengê ne normal e; serîhildana me ji bo nepejirandina ve ne-normaliyê ye. Gava em çavên xwe li yên dijîn digerînin, em dibînin ku rewşeke nebaşî-nebaştirîn heye û bi hesanî em dikarin vê bînin zimên. Her rojekê tê nivîsandin, “Welatê navê wî nehatiye danîn ji mirovan tê paqijkirin û valakirin.” Çolamerg, Sêrt, Wan, Serhedan (Qers), Ararad, Çewlik, Mêrdîn tên valakirin, başûrê Kurdistanê tê valakirin. Çiye ev rewş? Heywan bi xwe jî zû bi zû ji cihên jiyana xwe qut nabin, çûk û civîk bi xwe jî hêlinên xwe yên berî salekê çêkiribûn, nuh dikin; bizinên me hene, ku bi salan xwe dûr nakin ji wan zozanên Kurdistanê. Baş e, ma gelo mirovên me çawa dikarin welê welatê xwe valabikin û birevin?

Ji cih hilkirin; ji welat dûr kirin, bi hemû lez û beza xwe didome. Lê ji hemû aliyan ve, her diçe bêhtir, ev bi sernizmî û bê-şerefî dibe. Heke di binê devê çekan û binkê çekan de ev bibûya, heke her rojekê mîna Ermeniyan, mîna Rûman me bidana ber kêr û dasan, laş û cendekên me gelî û nawalan dagirtibana, bê guman, heye we baştir bibûya; heke em bibûyana êmê masiyan, bê guman ev wê hinekî bibûya leyiqê mirovatiyê. Lê belê ne welê ye: Nîv bi nîv bi dilxwazî, hindekî bi eşq û kêf, hindekî bi êş û dilşikestî ev dibe û ev jî ne layiqê mirovahiyê ye. Dem û muhleta ku dijmin ji bo vî karî danîne, gelekî kin e; dixwazin domaneke ji çend deh salan biêxin di çend salên kin de û di van salan de biserkevin. Koma faşîstên li ser kar û rejîma şerê taybetî, ber bi sala 2000’an ve, dixwazin karê xwe tam biserbiêxin û behsa girîngiya vê hedefa xwe dikin. Dewleta Tirk dibêje, di sala 2000’î de, bi 70 milyon şêniyê xwe ve, wê yekîtiya xwe ya netewî û yekbûna xwe bibe serî û wê xwe bigihîne rewşa welatê Japonya. Bi vî awahî jî wê bibe hêzekî ku tirs dide cîranên xwe û wê bibe hêzekî li cihanê herî xurt. Belê,

behsa vî tiştî tê kirin. Lê di vir de, cihek ji me re nayê qebûl kirin; dixwazin me tune bikin, me ji welatî biajon. Heke hinek ji me li welatî bimînin jî, dijmin wê xweliyê bireşînin ser çavên wan û wan kor bikin. Yanî yên bimînin, wê bibin weke miriyên di tabutan de. Hedefekî bi vê nolê gelekî baş tê pilankirin û hêzên gelekî bi posîde di jiyanê de pêk tînin.

Behsa mejiyê Tirkbûnê, zanabûn û hişyariya Tirkbûnê; behsa vegirtina Tirkbûnê tê kirin. Bi vê jî, bi teviya paşverûtiya sedsalan, me ji moxil û bêjingan derbas dikin; ji nava keviran çawa mirov avê dizê dibîne, dixwazin ew jî weha bikin. Navê vê jî datînin siyaseta hundurî, siyaseta derveyî, kin were gorin siyaset. Lê ji aliyê din, ji ber ku şermê ji serdema me dikin, ji ber ku baş dizanin serdema me wê lanetê bibarîne ser wan, bi riya hinde figuranan (rolçêkirên besît), bi çarikên sivîl, şerê taybetî bi dizî dimeşînin û li ser vê bingehê dixwazin mirovahiyê bixapînin. Ev hovên bi unîformeyan (cilên leşkerî) ku polîtîkaya xwe bi xapandina mirovahiyê didomînin, dixwazin gelê xwe û gelê me bigihîn encameke weha ku nekaribin tiştekî bikin, dixwazin bigihînin rewşeke weha ku nezanibin çi dikin, çima dikin û çawa dikin. Li ser vê bingehê dixebitin ku şerê taybetî bi sextekarî, bi hîlebazî, bi durûtiyeka herî mezin bidomînin, ku li cihanê mîsal û nimûneyên weha hema gelekî kêm hebin.

Durûtiyên em dinasin, bi hezaran caran ji van çak û paktir in, bi rûmet û secertir in. Leyistina bi hemû nirx û buhayên civakî, ne tiştekî hesan, metodeke bi serê xwe û cuda ye. Ji ber ku ev çi tixûb nizane, bi xinizî û dilreşiya polîtîkî tê meşandin. Azîneyên eskerî bi wê giraniyê, bi wê hunerbaziyê tên bikaranîn ku belkî jî çi caran li hoy û şertên cengê nayin. Bîrdoza resmî, ji wan dêrên qurna navîn ên bi navûdengtirîn bêhtir, dixwaze mirovahiyê bixapîne. Ji wan dêran bêhtir, roleke rûxandkar, xirabkar û hilweşandkar dileyize. Bi taybetî jî zanîngeh, malbendên ilm û zanînê, ji malbendên dêrên qurna navîn bêhtir, bûne xwediyê rolên bê-oxir û mîna bûman. Ev malbendên sextekarî û xapandinê, roj bi roj mejiyê mirovan diqerisînin; ne çav dihêlin ne jî nêrîn, û ne jî bîr û baweriyek. Her tiştî mîna gêzingan dimalin û ber xwe ve dibin. Radyo û televîzyon bûne mîna tava baran û teyrokê, ku nahêlin mirov bikaribe çavên xwe veke; his, raman û meylên mirovan ji bo şerê taybetî avadikin, li ser vê bingehê formasyonekê didin pêş. Em dev jê berdin ku em bizanibin bi zor û koteka eskerî û siyasî, bi hîlebazî û xapandinê çiqasî rê li şûn xwe hiştine; tenê zanîngeheke bi serê xwe, cihana weşan û çapemeniyê bi serê xwe, dikarin gelan li erdê biêxin û wan şeht û birîndar bikin.

Ev sîstema derveyî sedsala me, bi aboriyê dileyize, bi zikê mirovan dileyize û mirovan birçî dihêle. Bi metoda hînbûna seg û kûçikan, bi nanê gelan dileyize. Dengê zengilê sîxûrî û ajaniyê ye. Dengê nanî jî dikin mîna dengê zingilê. Geva devên mirovan mîna yên çukan ji bo pariyeke nan vedibin, dûvikên wan jî bi sîxûrî û ajaniyê ve hatiye girêdan. Belê karên aborî, bi tevayî bi vî halî ne û zivirîne rastiyeke weha.

Mekîneya şerê taybetî jî, dixwaze karê rûxandin û hilweşandinê temam bike. Ev mekîneya rûxandinê; bi ji welat ajotinê, bi qirkirin û kuştinê, bi bîr û ramanê, bi bê-hisî û wîcdanê, bi xwînrijî û lanetiya xwe, dixwaze vî karê ji welat dûr êxistinê di demeke gelekî kurt de bibe serî û biserbiêxe. Rastiya bingehîn a di bin valakirina gund û bajarên Kurdistanê de, ev bi xwe ye.

Ew Tirkîtiya fermî, ew Tirkîtiya hov û wehşî, li Rojava berfirehkirina xwe temam kiriye. Niha jî dixwaze li Kurdistanê, li Rojhilatê vî karê xwe bibe dawiyê. Welatê Grekan (Yewnaniyên kevin) çû, welatê Ermeniyan çû, wê welatê Kurdistanê jî dabiqurtînin. Daxwaz ev e. Bi wê birçîbûna xwe ya sed salan, bi wê rewşe xwe ya weke mirovê birçî ku xwe dispere nanî, dixwaze Kurdistanê jî di çend salan de, di zikê xwe de bihelîne. Navê vê bûyerê jî asîmîlasyon e, yanî helandin e. Lê piştî helandina gelê Kurd jî, hedarî bi vê Tirkîtiyê nakeve; vê carê jî, ji bo revandina pariyeke nuh wê çavên xwe berde cih û deverên nuh. Belkî welatê Azeriyan, belkî Asyaya Navîn, lê belê pariya niha pariya bi navê Kurdistanê ye.

Gava em, bi rengê PKK derketibûn holê, parola û slogana me ev bû: "Çi hêzek nikare me bi hesanî dabiqurtîne û berde zikê xwe." Niha jî em vê îddîaya xwe didomînin. Di bingeha nêrîna me ya ramyarî (siyasî) de, nepejirandina meyla hemû bikaranînên dijminî heye. Partiya me li ser vê bingehê bi şik li hemû tiştên bi destê dijminî dinêre; bi rengê nepejirandina kirinên dijminî xwe nêzîkî vê pirsê dike û dibêje; divîbû rastiyên jiyanê bi awakî din bana, divîbû jiyan bi awakî din bihata pejirandin. Partiya me, dixebite ku bi hişkî girêdayê vê tewrê bimîne. Nehiştina daqurtîna bi hesanî, neynika hemû xebatên me yên di pratîkê de ne. Lewma me dîrok lêkoland û em lê geriyan, lewma me mirovatiya rojene nirxand û rewşê ji ber çavan derbas kir. Ji ber vê yekê em xebitîn, ku karê me baş pêş ve here, ji ber vê yekê em bûn hestuyên masiyên piçûk û em xebîtin ku dabiçikin qorika dijminî. Me navê polîtîkayê, me navê xeta siyasî, me navê ronahî kirina rastiyan da vê xebata xwe. Me mîna qampanyekê dest avêt van; me navê van danî xebatên bîrdozî (îdeolojîkî) û heya ji me hatî, me giraniya xwe danî ser vê kar û xebatê. Bi riya kotekê, bi şerê çekdarî, me berê xwe da dijminî û me bêhtir bi sîstematîkî li dijmin da; me navê vê xebata xwe jî danî, kar û barê taktîkî.

Gava em bifikirin ku welatê me niha tê valakirin, ev wê bibe xwe xapandineke gelekî mezin. Ji roja ku Tirkîtî ketî Kurdistanê û heya niha, Kurdistan tê valakirin. Bi Alpaslan, bi Selçukiyan, bu siltanên wan ev hovîtî destpêkiriye û siltan Yavûz Selîm hîm û bingehekî gelekî xurt ji vî karî re paşê daniye.



"Dil bi kûl e Helepçe..." — Wênekêş: Rebwar Xalid

*"Di vê oxirê de me gelek tişt çêkirin. Me law û keçên vî gelê bindest ên ciwan û şêrîn kişandin cem xwe, lê dijminan xwîna wan a zelal rijandin ser axê. Axa welat pê şuştin. Me hemû hêz quwwetên mirovî di xizmeta xwe de şixulandin, me xwest em biherikin çavan, guhan û ji wan jî biherikin mejiyan; me zanî em xwe berdin hêlînên dilê mirovên Kurd. Bi vê zanabûna xwe, me xwest em posîde û bandûra xwe li ser mirovan avabikin. Em xebitîn, bi xwehdana eniya xwe, bi destên xwe yên ji ber karê giran û zehmet qelişîn û derizîn, ji bo hinde tiştên pîroz, ji bo hinde mezinahiyên mirovî, hebûnên milletê Kurd ên buhatir û nirxtir bikin gorî û qurbanê vî welatî. Bi dilekî şewitî, bi dilekî bê hedar, bi dilekî tijî êş û tivanc, em xebîtin vê bikin. Ne hesaniye ku mirov debara vê rastiyê bike, ma dil wê çawa bikaribe vê êş û tayê hilgire? Me got, bila li ser axa vî welatî xwînê birijînin, xwîna delalan û xwazgîniyan biherikînin... lê vê xwînê jî, bê bedel, bi rengekî bê menfeat dilop bi dilop li ser axê bireşînin... bila axê bi xwînê av bidin. Me got, belkî hinek hişê xwe bînin serê xwe, belkî li ser vê xwînê hindekî bifikirin, belkî namûs ji cehennemê vegere û hinek namûsê bibihîsin. Belê, me law û keçên milletê Kurd ên bi qiymet û pîroz kirin goriyê Kurdistanê, deşt û çiyayên Kurdistanê. Me got, belkî mirovên bê mejî mane, dîsa vegerin ser vê axa Kurdistanê. Me got, belkî bibêjin, 'Dil û canê me, perçeyên mêlak û cigerîn me ketin vê derê, ka em jî hema kulmek ji vê axa canê xwe biramûsin.' Me got, belkî bibêjin,' Êdî bes e, hewar û hewar, êdî em hinekî bifikirin, eqlê xwe bînin serê xwe.' Me got, belkî hinek bibêjin, 'Ew vî tiştî ji vî milletî re kirin.' Belê, me got, bila welê bibêjin û zorê bidin xwe ku vî milletî bizanibin, vî welatî nas bikin. Xwîn li erdê ye, şop û lekeyên namûsê li ser axê ne... me got, belkî bi kêmasî hema ev, wê ramanê, wê fikarê, wê his û evînê bipeqînin û şeref û namûsê biafirînin..."*

"Kuyucu" Murat Paşa, di vî karî de, xebata herî tirsdêr û hovtir daniye holê. Siltan Mahmut û Abdulhemîdê Osmanî vê valakirinê bi zêdeyî lezandine û dijwar kirine. Îmkan û derfet hîna jî hene, ku mirov bikaribe jêmayên valakirinên wan dem û salan, vê rojê jî bi firehî bibîne. Mustafa Kemal Ataturk û "Komara Tirkiyê" vê ji cih hilkirin, ajotin, mişexte kirin û valakirinê gihandin rewşeke bêhtir bi nîzamî, sîstematîkî û xwedî pilan.

Valakirina Dêrsimê, polîtîkaya bingehîn di valakirinê de ya vê "komarê" ye û ya herî mezin e. Dêrsima ku bi derengî çavên xwe li ber cihanê vekiribû, di rastîniyê de divîbû bêhtirîn xwe bi axa xwe ve bizeliqîne. Lê îro em dibînin, ku Dêrsim bi çar aliyên cihanê ve hatiye pejiqandin û avêtin. Ji ber ku Dêrsim, nîşaneke ji wê siyaseta kemalîzmê re. Ew serpêhatin û tradîsyona ku em dibêjinê feodal û barbar, heya van salan, valakirinê bi vê sîstemê meşandine. Lê di dema "komarê" de û bi taybetî jî piştî salên 1950'an, kapîtalîzmeya bi hîle û durû pêşveçû, ku bû kehniya rejîma zorbaz. Ji vê demê pêve valakirin, xwe gihand rewşeke sîstematîktirîn û bû siyaseteke, ku ji hemû aliyan ve dihate meşandin.

Ne tenê mirov ji war û cih hatin dûr êxistin, mejiyên mirovan hatin koç û mîşexte kirin, dil ji dilbûnê hatin derêxistin. Bejn û bedena mirovan dijiya, lê mejî koç kiribû, lê dil ji welat dûr ketibû. Ev aliyên nefikirin û koçkirinê gelek bi tehluketir in, tirs didin mirovî. Mirovên me bi rengekî xiniz û bê-şeref kirin muhtacê pariyeke nanî. Hinek berê xwe dan biyaniyê, xurbetê. Heya pîvanekê mirov dikarê rewşa yên ji welat dûr ketine fahmbike û xebata wan bipejirîne. Le yên li welat mane çima vê çendê bûne bê mejî, çima vê çendê bûne tirsonek û jiyaneke bê dil diajon? Rewşa yên li welat gelek pepûk û reben e, gelek belengaz û pejmûrde ye. Bi rastî yên li Ewrûpa û Rojhilata Navîn hatine pejilandin, rewşa wan hezar caran çêtire ji rewşa yên li welat mane û serî çemandine, rûmeta xwe tewandine. Ev rewş hezar caran bê-şereftirîn e, ji rewşa yên li derveyî welat. Pêşiyên me gotine, "Kurd dimire lê natewe." Ma niha rastiyeke weha çiqasî serdest e? Heke hinek bibêjin, "Em çi bikin, zimanê me birrîn, devê me girtin, mejiyê me sekinandin, guhên me bi paçan kerr kirin", dîsa jî ev rastiyê naguhurîne û rastî her dimîne rastiya li ber çavan. Gelê me çawa ketiye vî halî? Ev çi ecêb û sosret e? Ev çi şermiya mezin û serî tewandina bê moral e?

Mirovahiya cihanê tim ji me dipirse: "Tu çawa qebûl dikî weha li welatê xwe bijî, ev çi jiyan e te dayî ser riya wê?" Tu çawa vê bê-welat hiştina mezin, vê li erdê êxistina mezin, vê gevizandina di nava herî û xweliyê de leyiqê xwe dibînî? Tu çawa van mîna bîreneke reşa di sîng de, kurmeke di mejî de, zîroyeke di xwîna xwe de, êşeka zirav, nexweşiyeke mirinê nizanî? Tu çawa dikarî bibêjî ez nizanim? Tu çi nizanî? Tu

çima mirina erzan, mirina mîna gemarê dizanî? Belê, ev e, sedem û sebeba bingehîn, ji bo pêşveneçûna me! Gava me PKK avakir û pêşvebir, armanca me hisab pirsîna ji polîtîkaya dijminî bû; ew polîtîkaya hov ku aşiqê xwe ye û ew polîtîkaya xwînxwar ku barbarekî mezin e. Belê, armanca me di analîza dawiyê de, ev bi xwe ye. Lê li aliyê din, divê em hevûdu bikişînin pêşiya hev, hisabê di hundurê xwe de ji hevûdu bipirsin û vê, her biçe di demê de di nava gelê xwe de jî belav bikin û rastiyeke weha serdestê teviya gelê xwe bikin. Belê, pêşî divê em vê bikin û çi caran di vê xebata xwe de nesekinin. Ji bo ku em bikaribin ji zorbazê mezin, ji zalimê mezin hisabê bipirsin, em vê hisab pirsînê di jiyan xwe de pêşvebibin. Di vê xelekê de, ji bo hisab pirsînê, emê her zorî û zehmetiyê jî qebûl bikin. Ger ev barekî gelekî giran jî be li ser pişta me, em mecbûr in vî tiştî bikin. Ma çi riyekî din heye? Heke nebe, hingê, divê ji bo hisab pirsînê, em bixebitin ku her tiştekî bikin. Gumana tu kesî bila nebe, em ê vê bikin û ji kirina vê jî çi caran natirsin! Ji ber ku, em dibînin ku wîcdana hinekan hatiye ser riya destpêkekê. Şeref, dest bi hişyarbûnê kiriye. Devên hinekan dest bi peyvandinê kirine û dibêjin, "Hewara me ye, me ji welat dûr diêxînin!" Hinek destpêkirine û dibêjin, "Welatekî me jî heye!" Weke helîna çiyayên ji qeşayê, hinde helînên piçûk tên dîtinê; dil û ceger, li hemberê xebatên me hinek nerm dibin, hênik dibin û hêdî hêdî dihelin. Li ser vê bingehê mejî, hinekî hunera raman û fikarê şanî dikin.

Ma yên ji welat têne derêxistin, tenê mirovên Botan in? Ma tenê Botan ji mirovan tê valakirin? Ma ji sedan salan vir ve, kîjan der maye, ku nehatiye valakirin? Ma çi di dilê mirovên Kurd de maye, ku ji dil nehatibe derêxistin? Ma çi di mejiyan de maye, ku nehatibe kolandin û pê leyistin? Ma tenê dilopeke girêdayê mirovahiyê di rihê me Kurdan de maye?

Di rewşeke weha di çi caran nabe, ku hûn xwe vir û wir ve bidin, dilê xwe biêşînin, xwe li ser piştan pal bidin, zimanê xwe bibirrin, çavên xwe kor bikin û dengê xwe dernexînin. Li çewta van, divê hûn baş bipeyivin, guhên xwe baş bidin bûyeran û divê hûn bizanibin êdî hindekî baş der û dorên xwe bibînin, bizanibin. Ger ev welat kiribin kavil û xirabe jî, divê hûn bizanibin, ji warên din mirov tên vî welatî. Em Kurd dibêjin, "Bêhna vî giyayê li ser axa Kurdistanê ne baş e" û em xwe nêzîkî bêhna vî welatî jî nakin. Lê lawên xelkê tên wî giyayê em bêhn nakin, dikin evîna dilê xwe û dibêjin, "Ev çi giyayekî çê û bedew e." Belê, wî giyayî ji xwe re, giyayekî gelekî xweş û rind dihesibînin. Ma çavên kî hene ku bikaribe vê rastiyê bibîne? Ma kesên ne kor bin, di nava me de mane?

Ew pêşmerge û gêrîllayên me, ku bêhtirîn evîndar û aşiqê jiyana li Kurdistanê ne, gava mirovan diperçiqînin, gelo karîne xweşikî, spehîtî, bedewî û rindiya tiştekî bibînin? Çi bedewî û xweşî dîtine? Çend çavên dibînin hene? Çend kes hene ku dikarin wan rastiyên em di hisreta wan de şewitîne, xweş bînin zimên? Em van deynin li kêlekekê; ma me fahmkiriye, çi ne, bê-welat hiştin û ji welat derêxistin? Ma em dikarin navê xwe bînin ser zimanê xwe û bibêjin, em jî milletek in, navê me Kurd e? Ma em, weke kesekî ji mirovatiyê, rêz û hirmeta xwe bi xwe dizanin? Ma em, çi buhabûn û pîroziyekê didin şexsê xwe bi xwe? Ma gelo em dikarin pîvaneke pîroziyê layiqê xwe bibînin? Kor û kerr nebin! Li rastiyên jiyanê fekin! Careke din hewl bidin xwe û li bersivên pirsên me bigerin! Belê, em mecbûr in, vê yekê bikin.

Ji ber ku em pêşeng û rêber in, hîm û quwweta me jî heye, ku em îro hinekî bi îddîa bipeyivin. Heke em ne rastiyeke girêdayê nirx, qiymet û buhayên gelê xwe bana, heke rêz û hirmeteke mezin ji me re nebana, helbet mirov vê çendê guhên xwe nadidan me û xwedî li me dernediketin. Lê dîsa jî gelek caran em difikirin; ên me famkirine çiqasî ji dil û can guhdêriya me dikin? Ên girêdayê me ne, çiqasî ji dil û can li ser riya me dimeşin? Rewşeke ji dil û can heye yan ne! Ji bo ku em piçeke din xwe nêzîkê rastiyê bikin, em çi zehmetiyekê qebûl nakin û bi teviya hebûna xwe dixebitin. Em hîç tiştekî nabexşînin. Tim û tim em xwe pirsiyar dikin. Lê dîsa jî em dipirsin; di nava rêzên xwe de, di dilên xwe de, me revînê çiqasî sekinandiye? Di dil de, di mejî de, di his de, di raman de me çiqasî xwe gihandiye pîroziya welatî? Ma bi rengekî rast em evîndarê welat in? Em dikarin rast bibin aşiqê welatê xwe? Em rast hîj welatê xwe dikin? Navê gelê me danîne, milletê çiyê, milletê bê nav, milletê bê advokat. Ma hinde kêlekên vî milletî yên werin heskirin, ên mirov wan ciddî bizanibe mane? Heke mabin, ma gelo me xwe gihandiye wan û em xwedî li wan derdikevin?

Di vê oxirê de me gelek tişt çêkirin. Me law û keçên vî gelê bindest ên ciwan û şêrîn kişandin cem xwe, lê dijminan xwîna wan a zelal rijandin ser axê. Axa welat pê şuştin. Me hemû hêz quwwetên mirovî di xizmeta xwe de şixulandin, me xwest em biherikin çavan, guhan û ji wan jî binerikin mejiyan; me zanî em xwe berdin hêlînên dilê mirovên Kurd. Bi vê zanabûna xwe, me xwest em posîde û bandûra xwe li ser mirovan avabikin. Em xebitîn, bi xwehdana eniya xwe, bi destên xwe yên ji ber karê giran û zehmet qelişîn û derizîn, ji bo hinde tiştên pîroz, ji bo hinde mezinahiyên mirovî, hebûnên milletê Kurd ên buhatir û nirxtir bikin gorî û qurbanê vî welatî. Bi dilekî şewitî, bi dilekî bê hedar, bi dilekî tijî êş û tivanc, em xebîtin vê bikin. Ne hesaniye ku mirov debara vê rastiyê bike, ma dil wê çawa bikaribe vê êş û tayê hilgire? Me got, bila li ser axa vî welatî xwînê birijînin, xwîna delalan û xwezgîniyan biherikînin... lê vê xwînê jî, bê bedel, bi rengekî bê menfeat dilop bi dilop li ser axê bireşînin.. bila axê bi xwînê av bidin. Me got, belkî hinek hişê xwe bînin serê xwe, belkî li ser vê xwînê hindekî bifikirin, belkî namûs ji cehennemê vegere û hinek namûsê bibihîsin. Belê, me law û keçên milletê Kurd ên bi qiymet û pîroz kirin goriyê Kurdistanê, deşt û çiyayên Kurdistanê. Me got, belkî mirovên bê mejî mane, dîsa vegerin ser vê axa Kurdistanê. Me got, belkî bibêjin, "Dil û canê me, perçeyên mêlak û cîgerîn me ketin vê derê, ka em jî hema kulmek ji vê axa canê xwe biramûsin." Me got, belkî bibêjin, "Êdî bes e, hewar û hewar, êdî em hinekî bifikirin, eqlê xwe bînin serê xwe." Me got, belkî hinek bebêjin, "Ew vî tiştî ji vî miletî re kirin." Belê, me got, bila welê bibêjin û zorê bidin xwe ku vî milletî bizanibin, vî welatî nas bikin. Xwîn li erdê ye, şop û lekeyên namûsê li ser axê ne... me got, belkî bi kêmasî hema ev, wê ramanê, wê fikarê, wê his û evînê bipeqînin û şeref û namûsê biafirînin.

Gotin di devê me de neman, tif li ser zimanê me nema, ronî di çavê me de nema... tev ji bo vegerîna welat. Bi halê xwe me hinde tişt kirin. Bi sergiranî, bi hedar, bi sabir, piçûk lê pîroz... me hinde tişt kirin. Tev ji bo sekinandina revîna ji welat, tev ji bo sekinandina we Kurdan ji revînê... lê me van tevan bi hêrs û girreke mezin, bi serhişkiyeke mezin, bi îddayeke mezin kirin. His û wîcdanê we direvîn, çavên we bi awirên şaş û çewt li me dinêrin. Lê me baş dizanî ji aliyekê çavên we şil in, bi zixtekê rondik wê bibarin, hêstirên çavan bi hesanî dikarin biherikin, lê ji aliyê din dîsa jî hûn ji welat û rastiyê direvîn. Me dizanî, ev nakokiyek mezin e, ev ne lihevhatineke berçavî ye... û me got, em ên ku pêşengên, em ê bê-eman herine ser wan. Em hatin ser we, me barê xwe danî ser we û me we vekir, me girekên di dilên we de ji hev vekirin û verisandin...

Gotinên weke sosyalîzm, wekhevî, azadî, serxwebûn, gotinên bingehîn bûn. Me bi wan girt û berneda. Behsa gel, millet, welatparêzî, azadî dihat kirin, me wan gihand cihên wan ên rast, me bi wan jî girt û berneda. Gotinên weke partî, şerê gelî, gêrîlla, pêşmerge di holê de digeriyan, me wan jî li cihê rast dan rûniştandinê û em xebitîn wan jî ji destê xwe bernedin. Her kesek, dikarî bêhtirîn bi van gotinan bileyize, lê me zor da xwe, ku em li hemberê van gotinan ser xwe bin, ciddî û ji dil û can bi wan ve werin girêdan. Bi vê xebata xwe, me da ser riya gerîna li dûv PKKê, me da ser şopa avakirina PKKê, me xwe gihand keftûlafta ku em bibin PKK. Hûn roja vegerîna me dizanin; bajarê Ankara, bajarekî çawa bû? Bajarekî, ku dixwestin biryara mirina me li wir bigihînin dawiyê. Lê em ji wir vegeriyan Kurdistanê. Bi rengekî maddî em vegeriyan Kurdistanê. Em xebîtin ku bi maddî vegerin û me vê kir jî. Lê li leyistoka çarenivîsê ya xerîb binêrin! Yê ku bi fedekarî û dilêriyeke mezin gavê pêşîn ji bajarê Ankarê avêtî welatê mirovên bê niştiman, yekî ji êrdima Behra Reş (Karadenîz) bû. Li holê bîrdozeke dîrokî ya bi îspat jî nebû, lê ev qehremanê bi navê Hakî KARER, xebatê da destpêkirin. Dilê lêdixist Hakî KARER, bi navê mirovahiyê got, "Ne gereke em pirsê dirêj bikin, divê em herin Kurdistanê" û xwe da ser rê. Ev çûyina wî sembolîkî bû. Kesekî weha bû, ku welatê me nasnedikir, navê gelê me jî belkî ji me bihîstibû. Li me meyzand û vî karî kir. Lê yên ku me evqasî çek dane destên wan, evqasî dirav (pere) dane wan; ên ku me van çiyayên zor dikarin werin vegirtin dane wan, çi dikin? Van herdu nimûneyan bînin cem hev, li wan binêrin û bixebitin xwe nasbikin! Ên ku bêhtirîn pişt didine me, durûtiyê dikin û ji dozê direvin, kî ne? Eşkere ye, ku ew ên ji welatê mirovên bê-niştiman hatine, bi xwe ne. Hakî û Kemal, bi ûsluba xwe, bi stîla xwe, bi dilê xwe hilgavtin û hilkişîneke tam kirin paya xwe. Yên din nekarîn bibin biqasî wan, kêm man. Çawa diçin welat? Çûyina wan hîç tiştekê naynê zimên. Karê dikin, li derveyî tevgera welat, dijbihê her tiştekê. Lê belê divê bizanibin, welat vê yekê napejirîne.

Me cendekê (cesedê) Kemal PÎR ê hişk bûyî dît. Wî, di zindanên Amedê de xwe da ber mirinê. Lê yên me, her çendî li baniyên welatê me yên nikarin werin zeftkirin dimînin jî, ji welat direvin, dengê welatê xwe nabihîsin. Binêrin li vê sosretê, dewleta Tirk wan hînî zimên kiriye; li cihên din mîna bilbilan in. Lê li van deran dengê xwe birrîne, zimanê xwe naşixulînin, bi hêrs in, xeyidî ne, rûyên xwe tirş dikin. Ev çi rewşe? Li vê nakokiyê binêrin! Heke em wan nesekinînin, ji komên şerê taybetî dijwartir, wê berê xwe bidin me jî.

Hinde dengbêj, kilamkêş, hel-



Dayîk û zarokên Kurd bi serok APO re:
"Perçeyên dil û canê wan, mêlak û cîgerên wan ketin axa Kurdistanê"

Wêne: Berxwedan

bestvan, hozanvan, nivîsevan û aktorên me, hunermendên me yên mezin hene, ku bi xwe jî dizanin ew Kurd in. Di vê dema dawiyê de, gotina Kurdistanê hindekî hildidin, di devê xwe de digerînin, hindekî dicûn. Gava behsa Kurdistanê hate kirin, ew jî êdî nekarîn xwe bigirin. Lê Kurdistan niha xwe dispêre wan; lê niha jî êdi nikarin binivîsin, bixîzin, bihunênin... ne roman û ne jî helbest. Tev xwe bê deng kirine, ji rastiya xwe direvin, ditirsin, dibizdihin. Belê, ev jî dibêjin em xwediyê his in, em nimûneyên tore û wejeyê yên bijartî ne. Ev, li ser gotina welat gelek fikirîn, nivîsîn, li ser azadiyê jî nivîsar afirandin. Lê gava dor hate gelê wan û welatê wan ê bê nav, dil û mejiyên wan sekinîn, qerisîn, tevizîn, Stranbêj jî xweş dixwînin, lê îro pirraniya wan bilbilên şerê taybetî ne.

Em li vir ne westiyan; divîbû em vî karî bibine heya dawiyê. Navê rastiyê divê mirov rast deyne, heke gelekî kêm qiymeta wî mabe jî û heke hebekî li ser lingan be jî, divê ev weha be. Ji vir mirov, divê bixwaze xwe bibîne. Welat heye, niştimaneke te heye; nav jî Kurdistan e. Milletek heye; me got, nav jî gelê Kurd e. Me got, ger bibe naveroka pêkenîk, henek û çîrokan jî, em vê navê lê bikin. Bi rastî xerîb digotin, "Ji ber ku çi karekî wan nemaye, xwe bi hinde tiştên vala mijûl dikin." Bi salan me welê dizanin û vê navê li me dikiran. Kesên ji binê simbêlan li me dikeniyan, henekên xwe li me dikiran, weha digotin. Di vê niqtê de neketina nava şaşiyan, gelekî pêwîst e. Divî bû di vir de em bibin xwediyê hêrs û evîneke mezin. Qehremanî, lehengî, mêrxasî, hogirî hindekî jî welê destpêdike.

Di van salan de em gelekî peyivîn; em xebitîn, ku têkoşîna bîrdozî û ramyarî (îdeolojîkî û siyasî) bi rê ve bibin. Ji ber ku me ev nav dabû têkoşîna xwe. Car bi caran me çekên xwe jî peqandin, xwîn jî heta rijandin. Hogirên mîna Hakî ketin dilê axê. Wezîfe û delamet mezin bûn, kar û barê me bibûn weke devê çatalê. Gava hema carekê xwîn birije erdê, xebat jî êdî weha dibe. Berpirsiyariya me jî weha destpêkir; me got, ev di bin berpirsiyariya me de ketin axê, divê xwîna wan li erdê nemîne, divê em nehêlin ku ev xwîn li erdê bimîne, ji ber ku bi çi rengeke din em nikarin xwe rizgar bikin. Aliyê rind û bedewtirîn ev bû; di oxirê dozê de xwîna şêrîntir rijaya bû. Çendî ev xwîna şêrîn birije hindê jî xwe digihîne pîroziyên mezintir. Bi vî awahî em ketin bin berpirsiyariyeke (mesuliyeteke) gelekî giran jî.

Me Partiya xwe danezane kir. Ev girêdanek bû, bi xwîna hatîbû rijandin. Me bername (program) nivîsî. Ji hinde aliyan jî me destpêkir ku li hinde kêlekan bidin, lêdanan bigihînin dijminî. Ev jî bû tolehildan û heyfhildaneke dîrokî. Lê hew me dît, ku cinawir û dehbe dest bi hişyarbûnê kir û bi serpêhatina hov û barbar seriyê xwe hilda. Mîna pûşiya ji bêvila (poz, kepî) Nemrûdî ketî hundurê serî û mejî kiritandî, di van salan de em xebitîn weha şerê xwe bilind bikin. Di her demê de, gava hema kesekî tenê jî hebe û ev xwe baş bide karê xwe, mirov dikare şerê dêw û cinawiran jî bike. 12'ê Îlonê çawa amade kirin? Ew mekîneya hûrkirin û gurandinê ya mezin, çawa berê xwe da PKKê? Dijminê me di perçiqandin û daqurtînê de heya were gotin jêhatî û zanabû, lê em mîna civîkan, mîna varik û kêzikan bûm. Bi kotokê em dimeşiyan, bi zorê me xwe diçilpand û em diqevizîn. Lê heya kîjan derê me vê dikir? Şêweya tevger û bîzava me weha fahmbikin: Em mîna kor û kopan bûn, bi tirs û bizdanê em dixebitîn ji bo em nebin êm û zadê dijminî. Hinek kom û rêkxistinên çep, hatin daqurtandin. Dev ji her tiştî berdan; dev ji welat, dev ji karvaniya xwe berdan, welê ku tu caran dîsa venegerin jiyanê. Namûsa me di vir de ev e; me weha erzan dev ji her tiştî ne berda! Me got, gavekê ber bi paş ve biavêje, lê ji bo parastina tiştên ji vê zêdetir. Bi buhaya li şûn xwe hiştina gelek tiştan revîna ji têkoşînê, revîn û bêbextî ye, xinizî û xayintî ye. Ev gelekî eşkere û zelal e. Lê ji bo parastina gelek tiştan ber bi paş ve avêtina gavekê, xwe paş ve kişandineke taktîkî ye. Maneyeke vê ya pîroz heye.

Di destpêkê de, bi vî halê xwe em, ne xwediyê îddîayên mezin bûn, her çendî me navekî mîna PKKê yê gelekî bi îddîa li xwe kiribû jî. Ji ber ku li ser şopa me ne çînek, ne kadro û endam û ne jî neteweyek dimeşiyan. Lê me vê îddîayê êxiste destên xwe û mîna xweşmêran me giraniya xwe danî ser vê dozê. Baş e, ma gelo di vê demê de rewşa me çibû? Em di kîjan halî de bûn?

Şervanên me nedizanîn baş berê xwe bidin dijminî. Tiştê dikiran û êrîşên wan ên diçûn ser dijminî, di rastîniyê de tenê xwe avêtine bextê taktîka me bû. Xwe paş ve kişandin, weke revînekê bû; weke ku mirov hemû nirx û buhayan ji cewherê dûr bike, weha dibû. Meşa wan jî, bi çav-korî dibû, hinek dikarîn bi hesanî wan gavan li erdê biêxin. Ev jî dibû sedema hundakirina her tiştekê. Rê ji bo ketin û zirarên mezin vedikir. Lê bilî van tevan, di vê pirsê de, dîsa jî em gelekî çavvekirî û hişyar bûn. Me xwe paş ve kişandibû, lê mewzî û kozên me bi destê xwe ve anîbûn, li ber sekerata mirinê bûn. Bi hemû hebûnên xwe, bi teviya quwweta xwe me wan tiştan diparastin, tiştên ku divîbû werin parastin. Em dixebitîn, ku di firsend û deliva pêşîn de bi hilpişkînekê em şansê pêşveçûnekê bi destê xwe bînin û tiştekî weha ji xwe re bigirin. Xebata li derveyî welat, divê hindekî jî welê were fahmkirin û zanîn.

Şêweya ji nuh ve afirîn û zabûnê, ne tenê ji bo me bû, ji bo neteweyekê ye. Ev ji nuh ve xuliqîn, ji bo rizgarkirina bîr û baweriyê, ji bo tevger û bîzavê bû; ew bîr û bawerî, tevger û bîzava ku wê rê şanî rizgariya Kurdan bike. Belê, bi tevayî rewş ev bû. Di destpêkê de tevgera me gelek balê nakişîne ser xwe, hindekî xwerû û ji rêzê ye. Lê bêlê, kesên dixwazin li vê cihanê bosteke axê ji xwe re bi dest bînin, divê xwediyê tewr û liveke bi nirx bin. Ên welê bi baldarîyeke mezin dibin xwediyê tewr û livên, ku ji wan re maneyekê tînin zimên. Lê çi heye, kadroyên me nezanîn bibin xwediyê îddîayê. Heke ew, mantik û logîka kor û şeht a dîrokê baş fahmbikirina, çawa li dijî me dişuxile bidîtana; heke baş bizanîbana aloziya (krîza) 12'ê Îlonê li çi, çawa diêxe, hingê, rewş jî wê bibana tiştekî din. Heke bizanîbana ev rejîm heya hûcreyên xwe yên piçûk dixwaze dawiya me bîne û heke di mejiyê xwe de xwe bigihandana zelaliyekê û bizanîbana dîrok di van salan de encameke çawa dixwaze û çi niqteyê dixwaze deyne, bê guman hingê, ji me jî zilam û mêrên mezin wê derketibanan.

> *"Hinde dengbêj, kilamkêş, helbestvan, hozanvan, nivîsevan û aktorên me, hunermendên me yên mezin hene, ku bi xwe jî dizanin ew Kurd in. Di vê dema dawiyê de, gotina Kurdistanê hindekî hildidin, di devê xwe de digerînin, hindekî dicûn. Gava behsa Kurdistanê hate kirin, ew jî êdî nekarîn xwe bigirin. Lê Kurdistan niha xwe dispêre wan; lê niha jî êdi nikarin binivîsin, bixîzin, bihunênin... ne roman û ne jî helbest. Tev xwe bê deng kirine, ji rastiya xwe direvin, ditirsin, dibizdihin. Belê, ev jî dibêjin em xwediyê his in, em nimûneyên tore û wejeyê yên bijartî ne. Ev, li ser gotina welat gelek fikirîn, nivîsîn, li ser azadiyê jî nivîsar afirandin. Lê gava dor hate gelê wan û welatê wan ê bê nav, dil û mejiyên wan sekinîn, qerisîn, tevizîn. Stranbêj jî xweş dixwînin, lê îro pirraniya wan bilbilên şerê taybetî ne."*

Di destpêkê de, her çendî çi hêviyek li holê nebû jî, me zorê da xwe û piştî demeke gelekî kin, di bin rêberiya Kemal PÎR de ji nuh ve me xwe berda welat û me hilpişkînekê pêkanî. Paşê di meha Adara sala 1980'î de me dest danî ser pratîka li Curnê Reş (Hîlwanê) û Girê Sor (Sêwrekê), ku her tiştî ji destê me derdiêxist û dibir. Em ketin nava xilaskirina wê pratîkê. Mahsûm KORKMAZ kete ser rê, ji bo li Êlihê (Batman) hinde tiştan xilas bike. Me xwe gihand heya Dêrsimê, heya Serhedanê. Li Dilûkê (Entabê), li Ruhayê (Urfa), li Mêrdînê û hinde derên din çi hebûn me dest avêt wan û em xebitîn ku wan bikişînin, derêxînin cem xwe. Me destê xwe dirêjî welatên Ewrûpî kir. Ev tev, di salên 1980'î de çêbûn. Ji bo nirxandin û ji ber çavan derbaskirina sala 1980'î, çi me hebû, me xwest em xilas û rizgar bikin. Heke şansekî hilgavtinê hebe, me xwest bi vî karê xwe, vê hilgavtinê pêkbînin û hinde gavên nuh biavêjin pêş. Sala 1982'an jî, ger bi tixûb jî be, bû sala xwe komkirin û civandinê, xwe rastkirin û amadekirinê û paşê jî salên vegerîna welat destpêkirin.

Divê ev bûyer werin zanîn; divê mirov van baş nasbike: Me hinde tiştan ji erdê rakir, me hinde tiştan şiyandin welatê bê navan, nava gelê bê dadparêz (advokat). Me got, divê hedara me li pêşiya bê zimanan hebe; me got, li hemberê kesên hema pîçekê jî qiymetê nadin xwe, qiymetê nadin kesbûna xwe ya zikmakî, bila em bi sebir û taqat bin. Me got, bila em barê wan ê giran hildin ser pişta xwe, şax û milên xwe. Fermana dîrokê, dem û zemanê ev bû! Em fermanên weha gelek caran distînin û dibihîsin. Me fermanî girt û me hewl da xwe ku em bimeşin. Em xebîtin ku maneya vegerîna Botanê binirxînin. Yek Nîrvanê Hindu'yan heye; ziyaret û qûbbeyên bi xeml û şemal lêkirine, li ber wan dibin xudan perest. Mîrac'eke hezretî Mihamed heye; yanî ev ber bi asmanan ve bilindbûna wî ye. Qûdus xwediyê pîroziyekê ye; pîroziyeke gelekî bilind e, li gora xwe. Gelên din jî xwediyê hinde warên bilind û pîroz in. Ji bo me jî, weke wan, behsa pîroziya çiyayên bilind tê kirin. Me rastiyên dîrokî şanî kirin, me gelek sedem û hincetên siyasî anîn danîn pêşiya mirovan, em xebîtin ku rindî û spehiyên wan bibêjin, heya gul û çîçekan me xwest hinek tiştan bidin bêhn kirin, bidin hes kirin. Me got, bila van mîna bêhna misk û emberê bizanibin.

Lê bilî van tevan, endam û kadroyên me li gora cewhera doza xwe, nebihîsîn û neramandin. Me got, ev ji rê derdetineke bi meyla rastê ve ye, xwe tar û xwe kuştine. Lê dîsa jî me nekarî em xwe bidin ser riya rast. Me nekarî em bi pîrozahî xwedî li tewrekî rast derkevin, em biserkevin. Ev derdikeve holê: Her çendî gelek behsa welat, niştiman, welatperwerî tê kirin jî; her çendî şerê gelî, çiya û deşt, qehremanî û lehengî gotinên rast jî bin, qedir û qiymetê van nayin zanîn. Li deşt û çiyan piçûk dinêrin, li mirovan pîçûk dinêrin û bi ser de jî, baweriya xwe bi xwe jî hîç naynin.

Kixsandina dara jiyan û nîjadê ya pîroz, ne weke daxwaza me ya li ser riya serxwebûnê ye; li çewtî vê, mîna ji welat revînê çêdibe, ku vê daxwazê jar û sist dike. Ne ew dîroka wê ya mezin û ne jî mezinahiya çiyan, weke rastiyekê nayin dîtin. Tenê awirek, biqasî romanekê balê dikişîne ser xwe û van rastiyan ber xwe ve tîne. Nizanin li wan temaşe bikin, nizanin bibihîsin, nizanin bêhn bikin. Helbet em ê gilî û gazinên xwe ji van bikin. Ji ber ku ew van gotinan gelek caran li ser lêvên xwe gerandin, lê dîsa jî xwe berdan erdê, rûniştin û pal dan ser kêleka xwe. Ev çi xwe hunda kirine, xwe nezanîn e?

Bi xebatên xwe, me xwe gihand vê rewşê. Heke rêz û hirmeta mezin nebe, heke her tişt li ber destê van bimîne, ew tiştên ku dijmin jî ji bo me daneniye pêşiya xwe, wê bi serê rastiyên me bînin. Dilreşbûn, cerdevan û eşqiyabûn, ketin û nizmî, revîneke kirh û pîs, hem jî bilî wan canên bi nirx, wê çêbibe, heke her tiştek bikeve ber destê wan.

Deliv û firsendên gelek baş ketin destan; xwe gihandin rewşekê ku êdî bikaribin bijîn; ên bê welat, li ser bingeha serxwebûn û azadiyê, gihan derfet û îmkana war û niştimaneke weha ji xwe re peyda bikin. Evîn mezin e, hêvî mezin e, lê tiştê li hemberê van pêşvedikeve, bûyereke xirakirin û avêtina her tiştî bi xwe ye. Bi tevayî ev bi xwe dibe.

Deh salên di navbera sala 1980 û 1990'î de, ji Partî û gelê me re, encameke seranser a deh salan in. Îddîa bi xwe jî, bi hemû tiştên xwe ve namîne; bi navê hêviyê jî tiştek li holê namîne. Ev sal, salên revîn û bazdana mezin in. Şervaniya 12'ê Îlonê ya taybetî, bi hîlebazî û zorbaziyeke di dîrokê de bê-nîşe, bê naskirina çi tixûbekê berê xwe da me; ji ber ku hindekî me karîbû em vê rejîmê bêhnteng û bê hizûr bikin. Ji ber vê yekê dixwaze bi mîsagorî (garantî) palaftin (tasfiye) û tunekirinê bibe serî û ji her aliyan ve temam bike.

Opersyoneke Rum-kirinê, Ermenî-kirinê... Ev kar û barên dijminî yê daqurtînê, ew rastiyên seranser û bi tevayî bi xwe ne, ku rê û meyl raberî me dikin. Lê tişt û hisên şervan û kadroyên me yên rê û meylan raberî dikin, hisên ji van cûda ne. Hisên xwestek û daxwazê, hisên tunekirina dijminî gelekî neçûne pêş; hûn nikarin ji xwe re bibêjin, çawa em ê neyin daqurtînê, çawa em ê diranên dijminî perçe bikin. Çima hûn xwe nagihînin ramana siyasî, çima hûn xwe nagihînin ramana askerî; çima hûn nabin xwediyê vê tewr û livê; çima hûn eşq, evîn û viyanê (îradeyê) nikarin pêş ve bibin? Lê belê hûn baş dizanin, ku ev sal, salên mirin an mayina Kurdan in, salên tolehildana ji êr û êgirî ne. Yên li derveyî me bi xwe serwextê vê rastiyê bûne û vê dizanin, çima ev vê weke hewce be, nikarin vê bibînin û nikarin vê binirxînin?

Mirovên me ji bo hêviya mezin nikarin bimeşin; ji bo pîroziya netewê xwe, ji bo domandina nîjadê xwe mîna kor û bê-mejiyan in, lê ji bo kesaniya xwe û ji bo bê-esliya xwe hemû karînên xwe mîna hespê rewan dibezînin çar gavan. Di van salan de, ji bo domandina nîjadê xwe mirovan li Kurdistanê gelek zaro çêkirin. Lê me vê ne baş dît; ji ber ku, ev di bin daxwaza dijmin de çêbû. Di vir de azadî nebû, ketin û rezaletî hebû. Ne welê bana, nexwe em baş dizanin rêz û hirmeta mirovên xwe bigirin. Ji ber ku em hileya di binê vî tiştî de baş

dibînin, me got, ji tiştekê re jî heq û mafê we tune ye. Lew neyar û dijmin bi qirkirin û şikandina nijadê dixwest xwe bigihîne serfiraziyê.

Rêza me ji gelê Ermenî re heye. Lê ji ber ku hatine qirkirin, di rewşeke gelekî ne baş de ne. Ji gelê Rumî re jî rêz û hirmeta me heye. Lê ji ber ku li ser wê axa bedew rastî qirkirina Tirkan bûne, divê şermê ji xwe bikin. Îro ev dikarin hindekî dijrabûna xwe bînin zimên û xwedî li xwe derkevin, lê ev nikare tiştekî rizgar bike û divê ew jî vê baş bizanibin.

Dijminê Tirk dixwaze me bibe rewşeke ji ya wan gelekî nebaştir. Li cihanê niha rêza Ermeniyan hindekî heye. Hirmeta Rumiyan jî heye. Ronakbîr in, pêşveçûne, tiştina dizanin. Lê em? Weke şivanên berî hezar salan... gelê çiyê yê bê zimên... em di çi rewşê de ne? Em dikin û nakin, nikarin vê rastiyê bidin fahmkirin.

Raporên Botan hatin, hatin xwendin, her tişt li pêşiya çavan in. Divê mirov careke din ji van bipirse; çawa we pejirand hûn bikevin vê rewşê? Me di van salan de gelê xwe rakir ser piyan, gelê me serî hilda, di nava rêzên milyonan de me evînên mezin çandin, canên pîroz hatin gorî kirin. Eşkere û zelal e, ku xebat û lebata me di avê de neçûne û naçin jî.

Gotina me ji hinde hevalên riya me re ye; bêhtirîn jî, ji wan kesan re ye, ku divê bibûyana serekê xebatê, birêvebirê xebatê, hîma serkêşiyê. Hêza birêvebiriyê, hîma serkêşî û doliwgeriyê, tên maneya rizgarbûnê. Pirr eşkere û ronak e, ku bi hesanî mirov nikare xwe bigihîne vir, biqasî zehmetiya rizgarbûna me ev jî zor û çetin e. Lê rewşa me di tehlukê de ye û rewşeke weha ye, ku divê mirov vê rewşê sivik nezanibe. Ger ev nebaşî hunera şexsekî jî be, dikare hişyarbûna mezin a bi milyonan mirovan li erdê biêxe; bi hîma hêvî û meşa wan bilyize, wan ji rê derbiêxîne û bide erdê. Li hemberê çi, çawa radibin ser piyan, ne eşkere ye! Gavên pêşîn ên meşa me ya pêşîn çawa hatin avêtin? Em vê ne bê mane dibêjine we. Lê heke ji hinekan re bimîne, tevlî xwe di cih di her tiştekî wê razînin erdê, bidine tune kirin. Dil bi van re tune ye. Mejiyê wan naşixule. Ev kesên weha ji par û pêrar, ji mêj mirine. Çi maneyeke wan nema ye, tiştekê danaynin pêşiya çavan. Bila bizanibin, pirs ew e, ku bikaribin her tiştekî pîroz, buha û bi nirx di jiyanê de her demê bihêlin û bivejînin.

Me got, bila gel bi pîroziyeke mezin xwe bi me ve girêbide, bila gêrîlla bikaribin karê xwe baş bikin û bila Partî jî pêşengiya wan bike. Ev tev, ne ew tişt in, ku mirov nekaribe wan fahmneke. Ma layiqê me ye, ku hema her carê em van rastiyan dubare û tekrar bikin? Lê dîsa jî me behsa welatparêziyê, pêşvebirina şerê gelî û gêrîllayên vî şerî kir, bi şêweya ku di şerê çi milletekî de nehatibe dîtin. Hezar caran bi me dan gotin, me jî hezar caran got. Lê dîsa jî nikarin birêvebibin, bimeşînin. Heke mirov çil caran jî li rastiya wan biêxe, dîsa jî hema gaveke jî navêjin. Em nikarin di lawên mirovan de, şêweya şerê jiyanê yê bingehîn, bikarbînin. Niha em wan hindekî vedihesînin, tînin ser rê, wan hindekî dikin welatparêz, lê em dikin û nakin nikarin komûtan û serleşkeran derînin holê. Bi çi rengî jî be, xwe nêzîkî serleşkerbûnê nakin, xwe nagihînin şerê xwe yê zikmakî û xwe nêzîkî rast bikaranîna gêrîllabûnê nakin. Ji bo xwe bidin gurandinê, ji bo xwe bidin perçiqandinê û şikandinê her demê amade ne, bi çav-korî, bê hişî û serxweşî xwe didin kuştinê û ji mirinê re her demê amade ne, lê bi çi rengî xwe nagihînin reng û şêweya xwe di jiyanê û dinê de hiştinê.

Ger cure bi cure jî be, me rastiya pêşengiya PKKê bi caran ji wan re got. Di taybetiya vê niwênderiyê (nûneriyê, temsîlê) de me danî pêşiya çavan, li hemberê kîjan dîrokê me bi hilpişkîneke çawa bersiv daye.

> *"Armanc û hedefên me jî hene; ber bi sala 2.000'î ve, di vê gerdûna me de, perçeyeke piçûçik ji me re jî wê hebe, ev cihê me wê çêbibe. Ev gelekî hewce û pêdiviye, ji bo ku em jî bibin layiqê malbata mirovatiyê ya bi şeref û rûmet, ji bo ku em jî bibin endamekî vê malbatê yê serbilind, bextiyar û gerdenazad. Navê şerê me ev e: Ji bo em li ser axa xwe bi azadî çavên xwe li dinê vekin û bi azadî bijîn, ji bo em jî bikevin kêleka pêşveçûna giştî ya li cihanê û bibin perçeyeke jê, em vî şerî bilind dikin. Li ser perçeyeke axê ya piçûçik em dixwazin tiştina bikin. Li ser vê axê bav û bavpîrên me hatine dinê û mezin bûne; hinek jêma, şop û nirxên ji me li ser vê axê hene; ev nirx mîna pejn û şopan jî bin hîna jî berdewam dikin; ger ra û koka gelek tiştan hatibin zûwa û hişkkirin jî, dîsa jî hinde tişt di erdê de cihê xwe girtine û nekarîne wan ji erdê hilbikişînin, ger tevlîhev û giftûgirift jî be çend gotin û bêje tên peyvandin, stranek-dido tên xwendin, govendek-dido tên leyistin; çend kavil jî mabin, ev delîlê hinde tiştan in û şahidiya tiştina dikin; bilî her tiştî dîsa jî em nikarin zû bi zû û bi hesanî xwe ji hewa û ava vî welatî qut bikin; belê, li cihekî weha em şerê xwe bilind dikin. Em dixwazin hinde tiştan ên mîna yên gelên cihanê kirine, bikin. Em dixwazin, heke deliv, îmkan û derfet hebin hindekî çêtir ji wan bikin. Em ji bo vê dixebitin û şerê xwe bilind dikin. Tiştên ku me di van salan de ji xwe re kirine armanc û hedef, em ê wan bi şer û cengê qezenc bikin, bibin serî."*

Vêca gêrîlla jî, terzê lêdana vê ya bi mejî ye, taktîka wê ye. Hûn derketin qad û meydanê, eniya we pak û sipiye, dijmin tê ser we, lê destên we ranabin. Baş e, vêca ma kêrî çi hat ev hilpişkîna we? Bi kulmên gelekî xurt divê hûn dijminî teslîm bigirin. Di şerê taktîkî yê mezin ê van salan dawiyê de, ji rabûn û rûniştina we, ji nêrîn û dîtina we, ji binê ling heya seriyê we, ji sekna we heya bejna we, me rê û meyl da hemû aliyên we, me we gihand şikl û formasyonekê. Lê gava em aliyekê rast û dirust dikin, hûn radibin aliyê din rezîl dikin û dev jê berdidin.

"Lêxe gêrîlla lêxe, Kurdistanê avake!" Ev dîrûşme, bi rastî jî sloganeke xweş e, hisreteke pîroz e. Lê pirsa me biqasî ku nebe pirseke hêvî, bêrî û hisretê, ciddî ye. Wê çawa çêbe, hîna gêrîlla bi xwe nikare xwe bide fahmkirin; çeka di dest de dike çend pere, nizane. Cerdevan û kontrayeke dijminî berdidin nava gêrîllayan, dikare wan tevan biêxe rêzê, werîsê xwe li dora gewriya wan bigerîne. Lê tiştê em dizanin gêrîlla xwe diêxe kozan. Îro, ew çiyayên ku çi caran dijminî nedikarî gavekî xwe biavêje wan, zivirîne daf û kemînên bi destê dijminî. Û çi mixabin, ku her rojekê gêrîlla dikeve dafên dijminî. Gêrîlla ketiye nava tengasiyê, weke bastîqê perçiqiye. Lewma em gelek caran li ser van pirsan disekinin; kî ye komutan, kî ye gêrîlla, divê çawa şer bike û hwd.

Lê bilî hemû tiştan, dîsa jî hinde tişt hatin xilas kirin. Evqasî kar û xebat, helbet wê di avê de neçûbana. Heke baş şer nekiribin jî, heke bûne xwediyê bikaranînên li cîhanê nelêhatî jî, dîsa jî me hinde tiştan xilas kir. Lê belê em baş dizanin, ku ev ne têr û bes in, bi vî rengî em nikarin xwe razî bikin. Me niqteya dawiyê danî ser vê. Şerê bingehîn, şerê mezin, rûpelên pîroz ji niha û pêve wê destpêbikin û vebin. Heke daxwaza meşê hebe, bila ne ji vê niqte danînê re be; wê bibe ji bo destpêkeke nuh. Dijmin jî vê îtîraf kir, pejirand. Gelê me jî dipejirîne, ku ev ne niqteyek e, destpêkek e. Heke pêşeng bi çi awahî nexwaze rola xwe bide leyistandin jî, me wî anî rewşa ku vê rola xwe ew bi xwe bileyize. Baş e, ma gelo karê me bi vê qediya? Ne! Ji bo dijminî hedef, hedefa berê ye; dixwaze heya sala 2.000'î "yekîtiya netewî", mûcizeya Japonî pêkbîne û di vê de ji me re, biqasî xalekê jî cih nehêle, nahêle. Dixwaze bi daqurtînê, bi helandinê, bi asîmîlasyonê karê xwe biqedîne û vê bi her cure zorbaziyê bigihîne dawiyê. Hemû enî û perçeyên dijminî vê weha nexwazin jî, di dema niha de eniya li ser rejîmê, eniya şer û êrîşbaziyê vê bi vebirî dixwaze; biryara cepheya şerê taybetî, biryara vê bira destelat rast û rast ev bi xwe ye.



"Stran, govend û kavilên gundên me delîlên hêviya serxwebûn û azadiyê ne" Wêne: Berxwedan

Armanc û hedefên me jî hene; ber bi sala 2000'î ve, di vê gerdûna me de, perçeyeke piçûçik ji me re jî wê hebe, ev cihê me wê çêbibe. Ev gelekî hewce û pêdiviye, ji bo ku em jî bibin layiqê malbata mirovatiyê ya bi şeref û rûmet, ji bo ku em jî bibin endamekî vê malbatê yê serbilind, bextiyar û gerdenazad. Navê şerê me ev e: Ji bo em li ser axa xwe bi azadî çavên xwe li dinê vekin û bi azadî bijîn, ji bo em jî bikevin kêleka pêşveçûna giştî ya li cihanê û bibin perçeyeke jê, em vî şerî bilind dikin. Li ser perçeyeke axê ya piçûçik em dixwazin tiştina bikin. Li ser vê axê bav û bavpîrên me hatine dinê û mezin bûne; hinek jêma, şop û nirxên ji me li ser vê axê hene; ev nirx mîna pejn û şopan jî bin hîna jî berdewam dikin; ger ra û koka gelek tiştan hatibin zûwa û hişkkirin jî, dîsa jî hinde tişt di erdê de cihê xwe girtine û nekarîne wan ji erdê hilbikişînin, ger tevlîhev û giftûgirift jî be çend gotin û bêje tên peyvandin, stranek-dido tên xwendin, govendek-dido tên leyistin; çend kavil jî mabin, ev delîlê hinde tiştan in û şahidiya tiştina dikin; bilî her tiştî dîsa jî em nikarin zû bi zû û bi hesanî xwe ji hewa û ava vî welatî qut bikin; belê, li cihekî weha em şerê xwe bilind dikin. Em dixwazin hinde tiştan ên mîna yên gelên cihanê kirine, bikin. Em dixwazin, heke deliv, îmkan û derfet hebin hindekî çêtir ji wan bikin. Em ji bo vê dixebitin û şerê xwe bilind dikin. Tiştên ku me di van salan de ji xwe re kirine armanc û hedef, em ê wan bi şer û cengê gezenc bikin, bibin serî.

Em ê bêjine vê, vegerîneke ji nuh, di vegerînê de kûr bûn. Salên 1990'an, sêlîmên xwe ber bi sala 2000'î ve hildikişin, dijbihine wê rastiyê, ku bikaribin gelek tiştan hilgirin, mezin û bilind bikin, pîroz û buha bikin. Bi destpêkeke nuh em ber bi kaşê ve xwe hildikişînin jorê. Em ê careke din pîroziyekê bexş û xelatê wan çiyan bikin, ku her yek ji wan biqasî abîde û mabedekê pîroz û bilind in. Em ê bi rêz û hişû xwe biavêjin wan çiyan ku biqasî yezdan pîroz û bilind in. Ji aliyê ber bi jorê ve hilkişîna ji sêlîmê jî ev weha ye.

Bê guman, vegerîn, ji gelek aliyan e. Ji dilê şivanê li serê çiyan heya dilê wî kesê li quncikeke cihanê yê dûr, ku bi rengekî girêdaneke xwe bi vî gelî û welatî re mabe, me ba û bahoz, tofan û bager daye destpêkirin. Ev tev, wê bibin ew keftûlaft û mijûlî, ku ji niqteyên bi rîskî û tehluke em xwe bi hev ve girêbidin û xwe bigihînin hevûdu. Ev jî, ji bo sert û dijwartir lêdan û lêxistin, ji bo em xwe bigihînin naverok, kakil û cewherê bingehîn lazim e. Gava em berê xwe didine vê, em hedefên dijminî jî çi caran ji bîr nakin. Gava em vê dikin kar û barê xwe, em vî cihê xwe yê biqasî niqteyekê jî ji bîr nakin. Belê, ev welê ye û rastiyeke ber çavî bi xwe ye.

Divê em bibin parêzkarên rastiyê; heqîqetê bizanibin û bibînin! Dijmin bi piştgir û hevalbendên xwe yên hundurî û derveyî ve, ji aliyên aborî, çandî, siyasî û eskerî xurt e. Ger siyaseteke paşverû ji xwe re kiribe bingeh jî, ji aliyê daringî (maddî) ve xurt e. Xwediyê wê îmkan û derfetê ye, ku bikaribe xeletî û şaşiyeke me ya piçûktirîn jî bizivirîne binkeftineke me ya mezin û tehl, bi êş û tivanc û li ser vê bingehê xwe bigihîne jêhatîbûn û serkeftinê. Di vî warî de, hîç gerek tune ye ku em xwe bixapînin, xwe şaş nêzîkê dijmin bikin, şaş li dijminî binêrin û bikevin nava dîtinên ne rast. Heya niha bilî

wan kêmasî, şaşî û xeletiyên gelekî mezin, em li ser lingan mane. Heke rastî ev be, divê em çawaçêbûna vê baş fahm bikin. Heke me tenê rê bidina yek ji van, ew dikarî dijminî bibira zafer û serfiraziyê. Jêhatîbûn, çalakî, jîrî, serkeftin û hatina me ya vê rojê, bi saya vê tedbîra bingehîn bûye. Bê şik û guman, ji niha û pêve, em ê pirsê bi şaşiyên kêmtir û heya were gotin bi jîrî û rihê karînê, bi destê xwe ve bigirin. Di vî karê xwe de, weke ku em ji kurtedîroka xwe jî dibînin, me ji cihekî welê xwe gihandiye vê hilgavtin û hilpişkînê, ku li cihanê belkî jî mirov dikarî kêmtirîn hêviya xwe pê girêbide û belkî jî çi kesekî şansê serkeftinê nedidayê.

Gava me bi navê gelê xwe û bi navê hêz û pêşengiya xwe, nîzamekê dida vî karî, em weha difikirîn û difikirin: Em ê bersiva demê di serî de bi hîma gelê xwe bidin; em ê rola pêşengî pê bidin leyistandin û weha pêş ve bibin; em ê karê pêşvebirinê ji şaşiyan, ji kêmasiyan paqij bikin û weha bersivê bidin; em ê baş bizanibin vî karê xwe pêkbînin. Gava em hedefên xwe eşkere dikin, em jî dizanin her demê paya hêviyê, paya xewn û xeyalê jî têde hene û ev mezin in jî, lê divê em bi ser de zêde bikin, ku tenê yek ji van hedefan jî biqasî vê dema niha nebûne rastiyeke jiyanê. Heke xeyal rastiyeke berçavî be, hingê hêvî jî wê bibe rastiyeke bêhtir dikare were pêkanîn. Koma nirxên ku bikaribin vê bi îmkan bikin, heye. Hîm û qudreta şehîdan heye, ku her yek ji wan bi quwweta bangeke mezin in. Ev hîm û quwwet, mirovan dikişîne dilêrî û cesaretê, cangorî û fîdekariyê. Li çiyan û zindanan liberxwedêr û xweragirt hene. Ev tev, quwweteke ber xwe ve kişandinê yên mezin in, ev quwweta bang û birêvebirê ne; kar û baran, delamet û wezîfeyan didin kirinê.

Gelê me dide û distêne, munaqeşeyê dike û ya pêwîsttirîn jî qerar û biryaran dide. Ji bo hilweşandin û rûxandina her babet zilm û zordariyê û ji bo bibêje di vî karî de ez jî heme, gelê me dipeyive, xwe dide pêş. Ji aliyekê bang li me dike û dixwaze em werin, ji aliyê din ve, vê banga xwe derbasê pratîkê û jiyanê dike. Serî li hov û cinawirê ku dixwaze wî bixwe, radike û bi rastî, ev jî şoreşeke bi serê xwe û bê nimûne ye. Berê gelê me di xew de bû, razayî bû perçe-perçe bû. Niha, me kariye em gelê xwe bînin vê rewşa niha.

Di van çend salên li pêşiya me de, heke dijmin tenê, bi ji mirovan valakirina welatî nemîne; li kêleka qirkirinê, heke rê bide hinde tiştên bi navê Kurdan, baş bizanibin ku ev ji ber pêkanîna taktîkê ye; wê bixwaze niqteya xwe çêtir deyne, ji bo nehêle ku careke din hinde destpêk çêbibin.

Ên bi quwwet û zorê xwe dagirtine, tenê bi quwwet û zorê wê werin sekinandin. Mirovahî, heq û hiqûq, di bin hoy û şertên aştiyê de ne bi derfet û gengaz in. Ma aştî tê xwestin? Ji gelek salan ve em hazir in. Em vê, aliyê çêtirîn ê siyasetê dizanin, em ê bizanibin û em ê bidin bikaranîn jî. Em ê bi Tirkan rûnin hevdîtinên aştî û lihevhatinê, mirov dikare bi rê û azîneyên polîtîkî hinde kêş û pirsan çareser bike, lê ew bi hesanî û zû bi zû nikarin werin vê çareserkirinê. Çarenivîs û qedera gelekan bi polîtîkayê verisandin û birin serî, lê ev bi me re wê bibe hindekî bi helez û înteresant. Heke dijmin ji gotina aştiyê tiştekî fahmbike, bi navê mirovahiyê em ê ji vê dilxweş û kêfxweş bibin. Lê dijmin berê xwe nadê vê, berê xwe dide zorbaziyê û weha dixwaze encamekê bi destê xwe ve bîne. Lê wê bixwaze bi arteşa xwe ya herî mezin, bi teknîka xwe, bi çekên werankirin û şewitandinê, bi tank û helîkopteran û hwd, yanî bi hacet û navgînên rûxandin û tunekirinê encamekê bi destê xwe ve bîne.



"Ev çi tofan, ba û bahoz e digere li ser niştiman? Derman tenê raperîna Kurdan e!" Wênekêş: Rebwar

Bê şik û guman, ev me dibe vê encamê: Ev çekên dijminî, di çiyayên me yên bala û berz de naşixulin. Ji ber vê yekê em ê heqê çiyê bidinê û gêrîllayên xwe bidine peyvandinê. Heke em şêweya şerê xwe bi xwe, bikin wasîteya hebûn û nebûna xwe, ev wê hebûna me biparêze. Rewşa li bervajiya vê jî, wê me tune bike. Heke em vê navgîna xwediyê maneyeke weha baş bişixulînin, baş û bê kêmasî bixebitînin, emê bikaribin teviya cepheya eskerî ya dijminî di avê de bibin û pûç bikin. Di eniya siyasî de jî, binketina dijminî ji xwe wê bê kêmasî be. Ji niha ve hinde îşaretên vê, heya pîvaneke pêwîst, derketine holê. Emê bixebitin, ku newekheviya eskerî ya mezin bigihînin wekheviya eniya siyasetê. Dijmin, şêniyê gelemperî yê Kurdistanê, di nava Kurdistanê de û bêhtir jî ber bi derveyî Kurdistanê ve, kişande bajarên mezin û metropolan. Li bajaran komkirin û civandineke mezin pêkanî. Hacetên ku wê agirî bidin vêxistin, bi destê xwe kişandin wan deran. Bê guman, ev hacet li wan deran wê agir bigirin û vêkevin, em ê li wan deran bidin vêketinê. Heke em hindekî ji taktîkê fêmdikin, pir eşkere ye, ku ev wê weha çêbibe. Gelek û gelek rabûn, raperîn û serîhildan wê pêşveherin. Ev tev pirsên organîzasyoneke xwerû û yekta ne, pirsên rêkxistinê ne. Gelê me mirina xwe anî pêş çavên xwe û xwe berda tiştina bike; me gelê xwe aniye vê rewşê. Lewma wê bizanibe ji bo doza xwe bimire jî. Gava milletek xwe bigihîne xala ku bizanibe di oxira doza xwe de bimire, ev tê wê maneye, ku dest bi jiyanê jî kiriye.

Li cem me ev niqte bi destan ve hatiye. Heke em bikaribin piçekî serkêşiyê bikin, her tiştek wê di riya xwe ya rast de here. Niha em di vê xalê de nikarin çi wateyekê (maneyekê) bidin behskirina ji şaşiyên mezin, ji rast neşixulandina taktîka me ya leşkerî û ji ne rast şixulandina çekê. Çima ev nikarin werin pêşvebirin? Di vir de em bawer nakin, ku derfet û gengaz kêm in, çiya ne bes in û quwwetê çiyan pê nagihe, gelê me milê xwe nade têkoşînê. Em problema mezin û bingehîn, di wan kesan de dibînin, ku bi vî karî dileyizin, henekê xwe pê dikin. Me gelek caran bala van kesan kişand ser rastiyan û me gote wan hişê xwe bînin serê xwe, hindekî çavên xwe zoq vekin, bel bikin. Me pêşiya wan gelek caran vekir. Bi xebateke perwerde û hînkirinê ya ji şêweya bê-nîşe, me hişt, ku deliv û firsendên yekcarî û bê-nimûne bigirin. Heke nekaribin bimeşin, heke nekaribin bitêkoşin û heke nekaribin vî çekî baş bikarbînin, wê çi bibe? Em ê bigihin armancên xwe, lê wê xwezî li van kesan bibe. Yek ji cem me here, em dikarin deh kesan bînin şûna wî. Heke li cepheyekê baş neyê şerkirin, bi garantî em ê di cepheyeka din de wan bidin westandin û mijûldanê. Heke hewce be, em ê teviya gelê xwe bikişînin şerî. Ji xwe gelê me, ji niha ve, vê şanî dike. Lê ev kesên weha, wê bimînin di binê lingan de û wê biperçiqin. Ev tev, wê bibin serêşiya karên wan. Çima ev wê weha be? Ji ber nêrînên wan ên çewt û seqet. Ji xwe ev e, ya ku dibe serêşiya wan. Ev gotinên me ji wan kesan re ne, ku cilên leşkerî li xwe kirine, lê çekê fahmbikin.

Ma hinek dikarin mîna berê neqenciyên berçavî, bînin serê vegerîna mezin, vegerîna ji gelek aliyan ve, destpêka mezin û vê gava welatparêziya mezin? Me li hemberê van tevan, tedbîrên xwe amade kirine. Ne dijmin efû dike, ne em û ne jî gelê me. Kesê biçe, wê ew bi xwe hunda bike. Mesuliyet û berpirsiyariya me, dîsa jî ji bo wî canê we ye, ku divê em rêz û hirmeta wî bizanibin. Di rastîniyê de ew canê we gelekî bi nirx û qiymete. Heke baş were şixulandin dikare bi kapasiteya atomê bipeqe, lê heke neyê şixulandin dikare mîna balonê vemire û pifê bide. Nebine weke balonê! Heya hûn gavekdido nemeşin, nekevin erdê! Ne ji ber ku em nikarin cihê we dagirin an jî em nikarin siyaseta xwe bimeşînin vê ji wê dixwazin, ne, tirseke me ya weha ji binî nîn e. Lê em dibêjin, divê rêwî weha nekevin, neketibana. Ev bîr û baweriyeke, bawerî pê anîneke, li cem me. Di rastîniyê de, gava em bi maneya leşkerî destê xwe biavêjin vê û me destê xwe weha avêtibayê, me wê bigota, "Kî bi prensîban bileyize, bila bikeve." Me wê weha bigota û xilas! Lê belê dîsa jî divîbû ne weha bana. Me got, bila ev bitêkoşin, di şer de bila hindekî bibin xwedî tecrûbe û hunerê, wezîfeya serkêşiyê ji bo gelê xwe bi lez û bezî pêkbînin û bila bikaribin bibin niwêndêrên (nûnerên, mesûlên) vî gelî.

Îro, hîna jî em mecbûr dimînin ku li ser hinde tiştan bipeyivin. Bi rastî, ev ji me re dibe şikenceyek. Livbaziya gêrîlla çawa dibe, gêrîlla çawa kiryariyan pêktîne, çiya çawa tê bikaranîn, meş çawa dibe, mirov çawa xwe dike kozikan û dafan vedide, mirov çawa li dijmin dide? Peyvandin û rawestana li ser van, bi tevayî bêhntengiyekê bi rê diêxe. Xerîbî di vir de ye. Gava mirov cara pêşîn li çiyan dinêre, ma nafikire çiya wê çawa were bikaranîn? Gava mirov pêwendiya pêşîn bi gel re girêdide, ma nafikire ev têkilî wê çawa were bikaranîn? Gava pênc kes xwe bigihînin hevûdu, ji vê komê hezeke xurt çawa derdikeve? Çawa mirov dikare çêtirîn li dijiminî biêxe? Çawa mirov dikare xwe bigihîne şêweya lêdanê ya xurttirîn? Ma gelo dibe mirov di PKKê de be, lê nekaribe rastiya PKKê bibîne, fahmbike û bizanibe?

Heke hûn ji pêşengiya PKKê fahmbikin, heke hûn ji şêweya derketina û lêdana PKKê hindekî fahmbikin, em bawer in, çi sedemek namîne ji bo hûn nebin gêrîllayekî nebez û pêşrêvan. Em jî zehmetiyên gavên pêşîn dizanin, me bi bêhnfirehiyeke mezin li van zehmetiyên gavên pêşîn nêrî û lê li pêşiya wan bêhnteng nebûn. Em xebitîn, ku berpirsiyariyê bigirin ser xwe û me van tiştan li şûn xwe jî hiştin. Niha çekên me xurt û bê-nimûne ne, her tiştekî şervanan heye, gelê me hîmbêza xwe ji şervanan re vedike, çiyayên me mezin in, gelî û newalên me jî hene, her der û dorek ji me re vebûne, çember hatiye şikandin; nexwe, ji aliyekê lêxe ji aliyê din derkeve. Tu dibêjî min xwe kiriye goriyê vê axê; nexwe, tu dikarî van tevan bi hesanî bikî. Taktîk çiye? Zanîna rêveçûnê ye; nexwe, bimeşe û lêxe! Lêxe, lêxe û bimeşe! Pêwendî û têkilî lazim bin, ev hene. Çek hewce bin, hilkişîne û bistîne, ji destê dijminî derêxîne! Heke tu gêrîlla bî, tu wê vê bikî, tu mecbûrî bikî!

Ev PKKê ye; PKK weha ye; PKK navê tevgera ku dizane ji zorî û zehmetiyên mezin xwe za bike. Tu jî law û keçê PKKê yî, tu berhemê wê yî; ma te hîç tiştek jê fahmnekiriye! Piştî evqasî salan, ma dibe mirov tiştinî din bike para jiyana xwe, ma ev dikarin werin pejirandin? Piştî vê qonax û merhelê, em dibêjin êdî ev nabe. Em mecbûr in biserkevin, bi rastî ev hesaniye jî. Serkeftin pêdiviye, ji ber ku li pêşberê me bûye fêkiyekî bêriya (hisreta) me bi wê hebe. Welat û şer niha vê çendê xweşik û delal in, û li pêşberê me jî rawestayî ne.

Em tiştekê jî mezin şanî nakin; heke hûn bixwazin tenê behsa yek bedewiya xwe bikin, ev jî bedewiya şervaniya we ye. Ev bedewî, dayîka hemû bedewiyan e. Derfet nîn e, ku mirov vê nebîne, gava dîtî jî mirov, aşiq û evîndarê wê nebe. Ma dibe mirov bi evîna vê, xwe negihîne jiyana mezin? Ma ji niha ve gelê me, van êş û tivancên mezin, van xîzanî û hejariyan, ne ji ber vê evînê dijî? Bi we çi dibe, ka bibêjin?

Av û rûbar bûne çem û lehî, ji niha ve zivirîne avên boş û xurt. Tîrêj jî, ji xwe hemû aliyan dibirisînin. Bilî dengê me çi dengek nema tê bihîstin li welatê me. Ma em ne ji bo van dimeşin? Hinek ji we, ji ber hisabên piçûk, di encama hisabên yekta de, zû diçin, dimirin; em bi vê dilsar û cîgerşewitî dibin. Di vî karî de helbet bila xwîn birije; bê guman û bi vebirî, divê şerê me bi xwînê, me çak û paqij bike. Derd û kula me ne ew e, ku em gelekî xwînê nerijînin; biqasî ku giring e em xwe gorî dikin, evqasî jî divê em gorîkirina xwe berdewamî bikin. Lê divê em vê bigihînin rêkxistinê, divê em her demê çekên xwe di destan de amade bigirin û bi vî rengî em xwe bikin goriyê şerkariya xwe. Belê, evîna me ya mezin jî ev bû. Ev, li cem me dihate maneya rizgariyê. Şêweya lêdana me, terzê jiyana me, eşq û evîna me ev bû. Ev, wê bibûyana serdestê salan û yên wê bibûyana serdest jî, wê biserbiketana û qezenc bikirana. Ji ber ku, evîna jiyana mezin di vir de veşartî ye.

Gava em nuh derketin ser rê, mîna mêşan me bi dijminî veda, me hinde derbeyan lêxist û di rastîniyê de ev lêdan, lêdanên mirinê bi xwe bûn. Niha me xwe gihandiye rewşa, ku kulm û şeqamên dijwar û serttir li dijminî biêxin. Dijmin jî şehttir bûye. Çiqasî dilê wî dixwaze bila bibêje me evqasî rê li şûna xwe hişt, di rastîniyê de dijmin ziviriye kavil û xirabeyekê. Heke em terzê xwe baş

bişixulînin, ev dawiya dijminî ye. Dijmin, ketiye nava rewşeka, ku devê wî agirî dipijiqîne, lê nikare xwe bi aliyê rastê ve, aliyê çepê ve û aliyê paş ve bizivirîne. Nexwe, li şûna tu jî xwe bi serhişkî bixî devê wî, derbasî paşiya wî bibe, heke bizivire, derbasî aliyê din bibe û bi wî awahî li wî biêxe.

Bi rastî, me nekarî em terzê xwe bikarbînin. Hîna jî bi vî halê xwe, bi vî halê xwe yê yekta û xwerû, em dijminî mijûl dikin. Heke her yek ji we bizanîbana bibe kelem, dirr û histiriyek, ma dijmin dikarî li wan çiyan gavekê ji biavêja, bimeşiya? Heke we pêl têlên dijminî yên sînîr û tivancê bikira, we têlên tayê hindekî bilebitandana û dijmin ketibana rewşekî ku nezanîbana ji kîjan derê û çawa wê lêdanê bixwe, ma dikarî xwe berde gelî, kendal, best, çiya û newalên Kurdistanê? Heke hûn vî hêz û quwwetê me yê hatî amadekirin baş bi cih bikin, ew li ser vê bingehê nikare li paşiya xwe jî binêre. Ji ber vê yekê, em dijminê xwe baş nasbikin! Vêca em terzê xwe baş bikarbînin û bişixulînin!

Ji bo bikaranîna terz û şêweya me, em dibêjin erê û ev baş e. Lê em ji bo kesên dibêjin, "Ezê xwe bikim devê bi pêtên agirî û weha şerbikim", bi yek carê em dibêjin ne û ev ne baş e, ne rast e. Ji ber ku ev xwetar e, xwe kuştin e, tunebûn û qirbûn e. Di dîroka berê de jî Kurd weha şer kirin û her demê me hunda kir. Dijminî binase, şêweya wî binase, rihê wî, zanabûna wî binase û li gora vê jî xwe amade bike; ev destpêka di taktîkê de ye, ev dersa eskeriyê ya yekemîn e.

Heke îro em hindekî di jiyanê de ne, ev piçek jî, ji ber siyaseta me ye, ji ber taktîkên me yên rast e. Berzimanbûna tundî ya siyasetê, hunera leşkerî ye. Ji aliyê eskerî ve me zanî em xwe hindekî baş pêş ve bibin, lewma jî em di jiyanê de mane. Di rastîniyê de bîr û ramana me baş bû. Her kesek razî û dilxwaz bû bi van bîr û ramanên me. Ji aliyê stratejîkî ve yê bîr û ramanê me qebûl neke nîn e. Lê ji aliyê taktîkî ve kesek nekarî bikeve ser meyl û xeta me ya siyasî yan jî leşkerî.

Em, pêşengiya Partiyê, em ketin ser rê û xeta rast. Koza me ya li vê derê, kozeke leşkerî û siyasî ye. Hemû ra û şaxên ku me li vir avêtine axê û dagerandine, her yek ji wan pêşveçûneke taktîkî ne; sînggirtin, koz û mewzîdanîneke taktîkî ne. Me li vê derê debara xwe kir. Behsa perwerdekirinê û hiç çênekirina wê tê kirin. Lê belê li vir, me bi taybetî giraniya xwe danî ser tedrîb û perwerdekirinê. Bi riya perwerdekirinê me hinde encam bi destê xwe ve anîn. Me we bi hînbûnekê şiyande welêt. Me gelê xwe bi hînkirinê rakir serîhildanê û hîna jî radikin. Ji îmkanên herî zor û zehmet me çek derêxistin holê. Gava em derbasî vir bûbûn, di destê me de tenê çekek jî nebû. Lê niha me çek daye destê deh-hezaran. Bi ser de jî ev der, ne çiyakî me yê bilind e. Em li welatekî biyanî ne. Em di qadekî weha de ne, ku di bin serdestiya hêzekî piçekî dost de ye. Me ev



"Dijmin ji gundan berdide mirovên me, lê wê bibin agir û dijmin bisofînin..."

Wêne: Berxwedan

der qadekî azadiyê yê piçûkok ji xwe re zanî. Me ev der ji xwe re weha nirxand û me weha rê ji bo vê encamê vekir. Lê belê kozên we gelekî mezintir in, bêhtir nikarin werin zeftkirin, li van deran hûn dikarin bêhtir hînbikin, fêrbikin. Bi evîneke mezintir, bi hiseke mezintir, bi eqildariyeke mezintir, hûn dikarin vî karî bikin.

*"Dijmin, şêniyê gelemperî yê Kurdistanê, di nava Kurdistanê de û bêhtir jî ber bi derveyî Kurdistanê ve, kişande bajarên mezin û metropolan. Li bajaran komkirin û civandineke mezin pêkanî. Hacetên ku wê agirî bidin vêxistin, bi destê xwe kişandin wan deran. Bê guman, ev hacet li wan deran wê agir bigirin û vêkevin, em ê li wan deran bidin vêketinê. Heke em hindekî ji taktîkê fêmdikin, pir eşkere ye, ku ev wê weha çêbibe. Gelek û gelek rabûn, raperîn û serîhildan wê pêşveherin. Ev tev pirsên organîzasyoneke xwerû û yekta ne, pirsên rêkxistinê ne. Gelê me mirina xwe anî pêş çavên xwe û xwe berda tiştina bike; me gelê xwe aniye vê rewşê. Lewma wê bizanibe ji bo doza xwe bimire jî. Gava milletek xwe bigihîne xala ku bizanibe di oxira doza xwe de bimire, ev tê wê mane yê, ku dest bi jiyanê jî kiriye."*

Mirovê derketî, ji welat çûyî der, mîna masiyê ji avê derketî ye. Bi kotekê dikare bêhn û nefesê bistîne û bide. Gelek zehmet dikare jiyanê bizivirîne hilberîn û berheman. Li welat zindan, li vir jî em vê çendê berxwedanê diafirînin, li gora vê, ma îmkan heye ku ew çiya nekaribin berxwedanê biafirînin, berhemên berxwedanê bi rê nexin? Heya were gotin gerîlla hatiye ronahî kirin. Her tiştek hatiye zelal kirin; ji bo ji aliyên kûrbûnê û firehbûnê ve pêşvebirina gerîlla, terzê jiyan û lêdanê, ji meşê heya baregehan, ji lojîstîkê heya livbaziyan her tiştek baş hatiye ronahî kirin. Heke hindekî bi hişî mirov xwe nêzîkê pirsê bike, her tiştek wê li gora xeta xwe ya sirûştî (tabiî) bimeşe. Weha meşandina vê êdî ne çi kêş û serêşiyek e. Gava me vê kir, em ê bikaribin xwe bigihînin wê rastiya li gora meşîna xwerûstî jî.

Gelê me, weke rastiyeke serîhildanê, li kêleka serê me ye. Verisandina pirsê, zoriyê dibe ser pêşveçûna serbixwe û aza ya dîrokê, ji ber ku ev ji dîrokê bi xwe re jî gelekî hewce ye. Heke em bi xwe, têkoşînê rûberê tehlûkeyan nekin, em bawer nakin ku gelê me tunekirinekê di sîngê xwe de bi cih bike û bipejirîne.

Heke vê carê em maneya wê baş bizanibin, em heqê pêşveçûnê baş bidinê, ev wê bibe gava me ya welatparêziya mezin. Ji xwe weha jî dibe. Xweya dike, ku vegerîna piştî salên 1990'an, ji vê jî bêhtir di welat de rabûna gelê me, dibe bingeha hisên mezin, hişyarbûneke mezin. Ev hişyariya di mejiyan de, ku her bi pêşveçûnên mezin ve diçe, dibe mîna tevger û bîzaveke horesên berfê. Guman nîn e; rastî weha çêdibe û dijbihê çêbûneke weha.

Hilpişkînên sala 1990'î ku li ser amadekariyên gelekî hindik xwe bilind kiribûn, xwediyê maneyeke gelekî kûr in. Heke piçek din ev şer li gora bibe layiqê pêşengî were ajotin, em gelekî baş dizanin, bi deh caran bêhtir encaman wê derêxistibana. Niha jî welê ye. Ji vê salê pêve, ber bi salên li pêşiyê, amadekariyên mezin çêbûn. Serketinên mezin, li gora vê jî tevgera welatparêziya mezin û pêşveçûna wê bi pîvana cengê, îro bûne rastiyên li ber çavan.

Dijmin, bê-welat-hiştineke çar-serî-ava sparte me; ne tenê di warê cih û mekanî de, di dilê me de, di mejiyê me de, çi hebe di tevan de weha kir. Xwest me bi carekê ji tevan qut bike. Vê weke hedefekê danî pêşiya xwe û hîna jî didomîne. Li hemberê vê xiniziya mezin, ku çi caran ne layiqê dîrokê ye û her demê bi lanet û nifrînê wê were nimandin; me jî xwe bi welatparêziyeke mezin livand. Gava kozeke piçûk, kêreke kuh, perçeyeke kevirî, qeteke darî bi xwe jî baş werin fahmkirin, tu çawa dikarî baş şer nekî? Te hindekî deliva jiyanê peyda kiriye, çawa tu dikarî wê jiyanê ji bo hisabnepirsîna ji dijminî bikar neynî?

Dîrokê, vê deliv û firsendê tam jî ji me re girtiye û raxistiye pêşiya me. Rojên hisab pirsînê, rojên verişandina kîn û hêrsa sed-salan, roja rijandina girra babelîskan hatiye. Ev roj, rojên weha ne, ku em bikaribin bibêjin em ji bo van rojan hatine xuliqandin. Hilpişkîna yên zû şehîd ketin jî weha bû, hîna yên wê derkevin holê jî hene. Ew li ser vê bingehê canê me ne, rihê me ne. Lê dema ji niha pêve, ji me bêhtir dixwaze. Bûyine rih û canê şehîdan ne bes e. Divê em rastûrast wan bivejînin, girînge em wan vegerînin jiyanê.

Êdî divê em derbasê wêje û toreya mezin a vegerîna mezin li ser axa welat, derbasê jiyana welat bibin. Heke li ser bingeheke rast avakirina welat destpêkirîbe, divê hûn jî bi pêşemîn car tiliyên xwe li ser axa vî welatî gerandinê, bi evîn û heskirineke mezin li wan çiyan, li wan çem û rûbaran, li wan çûk û civîkan û li gelê me bimeyzênin. Ev tev, dibe ku weke romantîzmekê ji we re şanî bikin, her kesek weha fahmbike; lê ev rast û rast tevgera welat avakirinê ye. Yê vê fahmnake, yê vê neke lerzîna dilê xwe, wê berjêr here û li erdê bikeve. Merheleya niha, merheleyeke cengê ya weha ye, ku her kesek bikaribe karekî, xebatekî bike û baş bitêkoşe. Heke hûn nekaribin vê bikin, hûnê hunda bibin. Hema bi kêmasî piştî vê qonaxê, xwe rast nêzîkê vê bikin.

Me ji kûriya dilê xwe bawer kiriye, ku gelê me dikare tevlî malbata mirovahiyê bibe, û ne tenê wê bikaribe xwe bigihîne vê malbatê, wê jê jî derbas bike. Û em vê îspat jî dikin; em vê bi girêdana wê bi bîrdoza me ya mezin ve, bi girêdana me bi rastiya wê ya zanyarî ve, bi girêdana me ya bi sosyalîzmê ve, îspat dikin.

Li hemberê tevgereke niqte û dawî danînê, ku dispêrin li ser salên li pêşiya me û bawer dikin ku bi vê em bi tevayî qediyane; li hemberê vê tevgera şerê taybetî, her tiştek ji nuh ve destpêdike. Rûpelên ji hev hisab pirsînê, tam jî di vê xalê de vedibin. Em bersiva vê hisab pirsînê weha didin: Tevgera welatparêziyê dizivirînin şerekî seranser û cengekî berfireh; ji bo vê jî, em terzê lêdan û cengê xwe, li gora serfirazî çi dixwaze, weha pêşvedibin; li ser delamet û wezîfeyên xwe yên bingehîn bê westan û rawestan dimeşin; û em wê meşê didin destpêkirin, ku di serê wê de serfirazî, zafer û serbilindî heye û xweya dike.

Li ser vê bingehê hûn tev li pêşberê wê rastiyê ne, ku hûn bi layiqî cihê xwe di vê meşa xurt de bigirin; di eniyeka cengê de, kîjan dibe bila bibe, hûn serketinê bi jêhatîbûn bidomînin, bi terzê ku hûn serkeftinê bi derfet bikin. Bê guman, ev rê, riya şehîdan bi xwe ye. Gavek e ji şehîdbûnê wir de, dikare ji me re bibe niqteyeke bi şeref û namûsê. Di meşa tevgereke weha de, ku bûye xwediyê bingeheke weha saxlem, ji bo serkeftinê her tiştek hazir û amade ye. Meşeke bi vê nolê, dilêrî û cesaret dide mirovî. Ev cesaret, cesareteke weha ye, ku hisabê wê mezin e, maneya meşa wê mezin hatiye xêzkirin, hedefa ku dixwaze xwe bigihînê tê maneya her tiştekê, di xwe de rê û çareyên serkeftin û qezenc kirinê bi derfet kiriye. Me şansê vê, em gelê Kurd şansê vê, di dîrokê de cara yekemîn e, digirin. Me xwe gihand şansekî weha ku em şexs bi teviya temenê xwe, xwe mijûl bikin, nikarin bi destê xwe ve bînin.

Ji ber van tevan, gava em bi dilêriyeke mezin ji bo serkeftinê dimeşin, divê em bi hedar û debar bin; heke em nirxên xwe baş bikarbînin wê me bigihînin serfiraziyê; divê em pêşengiya Partiyê, eniya şerê çekdarî yê xurt ê Partiyê, serîhildana gelê xwe, nirxên dostaniyê yên nikarin piçûk werin dîtin, baş bikarbînin; heke em van baş bikarbînin bi garantî em ê şansê serfiraziyê bi destê xwe ve bînin; divê em baş bizanibin, ber bi sala 2000'î ve xwe bigihînin hedefa mezin û li gora vê jî xwe bi jor ve hilbikişînin. Ji bilî vê, em ne xwediyê çi çareyekê ne. Bi rastî jî, ev sal, wê bibin salên jiyana me yên bala û bilindtir, pîroz û ciwantir.

Şehîd û cangoriyên me, bi tevayî eşqû êvînên vê meşa dirêj, bilind û pîroz bûn. Em jî, emê bibin îfadeya vê, ya di jiyanê de pêkhatî. Gava em ber bi van salan ve dimeşin, em weha mezin diramînin, em weha mezin li ser lingên xwe disekinin û dibezin... Nexwe, emê biserkevin jî... ■